5

به قسەی سەرکردەیەکی عارەبی سووننە بێت

## ئاکرێ و مەخمور و شنگار کوردستان نین

Ev keçên kejik yên swêdî ji bo taximê Kurdan golan davêjin

▶rûpel 8







# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 102 | 30 Pûşper / Juni 2011


Zewicandina zarokan: Duh zarok, îro dayîk

# Dayîkên zarok

Dayîkek ciwan ligel her du zarokên xwe û xuşka xwe li parkeke bajarê Rihayê rûniştine.

12 »

Rapirsî li Cizîrê: Ji 3 keçan 1 beriya 15 saliya xwe hatiye zewicandin.

## Gelek rêyên serketinê hene

Zelala 3 salî bi wêneyê xwe yê li ser ala Tirkiyê li baxçeyên zarokan matmayî ma. Lê bi şêweyê xwe yê “taybet” Zelalê mamosteyên alman “mecbûrî” daliqandina ala Kurdistanê kir. ▶6

## 24 seat ji bo rizgarkirinê

Li gor serokê “Partiya Wîfaq a Kurd li Sûriyê” niha kêm leşkerên Sûriyê li herêmên Kurdan mane û eger Kurd bixwazin dikarin di nava 24 saetan de herêmên xwe rizgar bikin. ▶5










Great Britain

Malpera nû ya Rûdawê vebû

Rûdaw.eu

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

# Rojnamevanan jî dest bi kurdî kir!

▶Balikçi: Ji bo rojnamevanên Amedê karên xwe bi hêsanî bikin divê bi kurdî zanibin

▶Xebatkarên AA, Sabah, ATV, DHA û Haberturkê jî li Amedê kursa kurdî dibînin.

**Bawer Çem – Amed**

Cemiyeta Rojnamevanên Başûrê Rojhilat (GGC) ji bo rojnamevanên ku di qenalên televîzyonê û rojnameyên tirkan de dixebitin, kursa kurdî da destpêkirin. Bi vê kursê tê xwestin ku rojnamevan zimanê kurdî baş hîn bibin û nûçeyên xwe baş çêbikin.

GGC ku navenda wê li Amedê ye, ji bo rojnamevanên ku di qenal û televîzyonên tirkî de dixebitin, kursa kurdî da destpêkirin. Di nava kesên ku tevlî kursê dibin de xebatkarên rojnameya Sabah, qenala ATV, Haberturk, Ajansa Anadolu û Ajansa Nûçeyan a Dogan (DHA) jî hene. Faruk Balikçi yê serokê Cemiyeta Rojnamevanan, derbarê armanca kursa kurdî de ji Rûdawê re axivî. Balikçi bal kişand ku Amed bajarekî pir girîng e û di warê rojnamevaniyê de jî navenda 10 bajarên li herêmê ye û wiha got: “Buroyên herêmê yên gelek qenal û rojnameyên neteweyî li Amedê hene. Bi qasî 10 bajarên li herêmê girêdayî buroyên Amedê ne. Ji ber vê yekê Amed di warê rojnamevaniyê de bajarekî sereke ye. Bi dehan rojnamevanên ku di van qenal û rojnameyan de dixebitin lê bi kurdî nizanin hene. Halbûkî kurdî êdî di nava jiyanê de dibe zimanekî serdest û gelek rojnamevan di warê peydakirin û çêkirina nûçeyan de ji ber nezanîna kurdî gelek zehmetî dikişînin. Me xwest em van zehmetiyan ji holê rakin.”


Wêne: Rûdaw

Serokê GGC, Faruk Balikçi




Balikçi bal kişand ku parlementerên Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) di gelek xwepêşandan û meşan de bi kurdî diaxivin lê rojnamevan ji axaftinên wan fêm nakin û got “Herwiha li teniştа me, li kêleka me Herêma Federal a Kurdistanê heye. Gelek rojnamevan ji Amedê diçin herêmê û li wir nûçeyan dişopînin. Ji bo ku bikaribin karê xwe bi hêsanî bikin, divê kurdî baş bizanibin. Avabûna Herêma Federal a Kurdistanê jî di warê kurdî de bandoreke pir mezin çêkir. Em fikirîn, di nava xwe de me munaqeşe kir. Ji bo çareserkirina pirsgirêka ziman, me biryar da em dersa kurdî bidin rojnamevanan.”

Serokê GGCê Faruk Balikçi bal kişand ku êdî gelek sazî daxuyaniyên xwe bi kurdî dixwînin, panel û semîner bi zimanê kurdî pêk tên û ji ber vê yekê jî rojnamevanên ku bi kurdî nizanin ji van nûçeyan bêpar dimînin. Balikçi ev tişt anîn zimên: “Di gelek panel, semîner û çalakiyan de dema ku axaftvan bi kurdî diaxivin, ji ber ku rojnamevan bi kurdî nizanin, nikarin pirsan bikin. Ev yek jî dibe sedem ku nûçeya tê xwestin dernekeve. Rojnamevan li ku dibe bila bibe, neçar e nûçeya xwe çêbike. Ji bo vê yekê jî rêya herî hêsan û baştir hînbûna zimanê kurdî ye. Mirov li vê herêmê çiqas bi kurdî bizanibe, dikare ewqas karê xwe baş bike.” Balikçi da zanîn ku li hemberî kursê eleqeyeke pir mezin heye û hemû rojnamevanên li Amedê dikarin tevlî vê kursê bibin.

## Termê gerîllayeke PKKê ya bi esil alman di goreke bi kom de hat dîtin



**Hêmin Xoşnaw**

Di şikefteke navçeya Çetaxa ser bi Wanê, di goreke bi kom de termê çend gerîllayên PKKê hatin dîtin. Berpirsekî Komela Mafên Mirovan (IHD) amaje dide ku di vê gorê de termê gerîllaya PKKê ya alman Andrea Wolf (Ronahî) jî heye.

Piştî dîtina vê gora bi kom, Komela Mafên Mirovan li Tirkiyê bi mebesta vekirina vê gorê dadgeh agahdar kiriye. Li gor agahiyên malpera Gazeteport, termên 28 gerîllayên PKKê di vê gora bi kom de ne, ku di encama operasyoneke artêşa tirk di 20.10.1998ê de jiyana xwe ji dest dane û li nêzîkî cihê şer di şikeftekê de bi kom hatine veşartin û dûre jî şikeft hatiye bombebarankirin. Lê berpirsê IHDê, Huseyin Firat Mavigul, ji Rûdawê re got ku hejmara termên di gorê de zêdeyî 40 kesan e.

Piştî belavbûna nûçeya mirina Ronahî hikûmeta alman çend caran ji Tirkiyê daxwaza agahiyan derbarê kuştina wê de kiriye. Dezgehên têkildar ên Tirkiyê jî di vî alî de her ragehandin ku “Termê Ronahî ji aliyê gerîllayên PKKê hatiye veşartin û agahiyên me li ser vê yekê nînin.” Lê Huseyin Mavigul dibeje ku termê Ronahî di wê gora bi kom de ye: “Em piştrast in ku termê Ronahî di vê gorê de ye. Ti guman tê de tune ku artêşa tirk ev term bi kom di wê gorê de veşartine. Belgeyên me li ser vê yekê hene û eger daxwaza wan bê kirin em amade ne wan bidin dadgehê.”

Andrea Wolf sala 1965ê li bajarê Munchenê jidayik bûbû. Berî ku pêwendiyê bi PKKê re deyne, têkiliyên wê bi rêxistina alman a qedexe “Artêşa Sor” (RAF) re hebûn. Bi sedema ku tiliya wê di tekîna zindana Weiterstadt de hebûye, sala 2005ê fermana girtina wê ji aliyê polîsên alman derdikeve û Ronahî berê xwe dide Kurdistanê û bi PKKê re dikeve pêwendiyan. Serokê PKKê Abdulla Ocalan 23.11.1996ê, di bernameyeke televizyonê de, pêwendîkirina Andrea Wolf (Ronahî) bi PKKê re vegotibû.

## 80 milyon endamên Partiya Komunîst a Çînê hene



**Rûdaw -** Berpirsekî bilind ê Partiya Komunîst a Çînê ragehand ku hejmara endamên wan 80 milyon derbas kiriye.

Serokê Fermangeha Rêxistinê ya girêdayî Komîteya Navendî ya Partiya Komunîst a desthilatdar li Çînê, Wang Çin Fîng, eşkere kir ku heya dawiya sala 2010ê hejmara endamên Partiya Komunîst a Çînê gihişt 80 milyon û 269 hezar endaman, yanî bi zêdebûna nêzîka 2 milyon endaman li gor sala borî.

Partiya Komunîst a Çînê mezintirîn partîye li cîhanê û hejmara endamên wê nêzîkî tevaya hejmara xelkê Almanyayê ye. Partiya Komunîst a Çînê 1ê tîrmeha îsal ahenga 90 saliya damezrandina xwe li dar dixe. Rojnameyên Çînê behsa wê yekê dikin ku ew pêşketinên mezin ên van 10 salên dawî li Çînê di encama xebata Partiya Komunîst a Çînê de pêk hatiye. Lê çavdêrên siyasî li derveyî Çînê dibêjin ku endambûn di Partiya Komunîst de tena rê ye ji bo bidestveanîna pile û payeyên hikûmî û civakî li Çînê.

Rûdaw

Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**İdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

# “Akrê, Mexmûr û Şingal ne Kurdistan in”

*__Hewlêr (Rûdaw) -__ Nûredîn Heyyalî yê sekreterê Bizava Niştimanî ya Hevgirtî ya Îraqê, ku di sala 2009ê de ji partiya Îslamî cuda bû, di hevpeyvînek ligel Rûdawê de nerazîbûna xwe derbarê projeya destûra Herêma Kurdisatanê de tîne ziman û dibeje “Tiştê taybet li ser Nînewa [herêma Mûsil], rexneya me li wê yekê ye ku 5 qezayên parêzgehê (Şêxan, Mexmûr, Tilkêf, Telefer, Şingal û nahiyên Zummar, Qereqoş û Askê Kelek) xistine ser Kurdistanê û dibêjin beşekî veqetiyayî ji Kurdistanê ne.” Heyyalî vê yekê jî red dike ku tiştek bi navê navçeyên “cihê nakokiyê” li wîlayeta Nînewa hebin û dibêje “Sînorê Herêma Kurdistanê ne netewî lê destûrî ne. Di deqa maddeya 117ê ya destûrê de behsa vê yekê hatiye kirin, maddeya 53ê ku behsa vî sînorî dike, dibêje sînorê Herêma Kurdistanê wan navçeyan digire ku berî 19.03.2003 ji dest dabûn, ku ew jî wîlayetên Silêmanî, Hewlêr û Duhok in, qezaya Akrê ne tê de. Destûra Îraqê nabêje sînorê Herêma Kurdistanê navçeyên ku bi zimanê kurdî dipeyvin lixwe digire.”*

*Heyyalî jî weke gelek Erebên din dijî hebûna pêşmergeyan li Musilê ye û di wê nêrînê de ye ku “Hebûna wan li Nînewa dijî destûrê ye, sînorê desthilata wan tenê Herêma Kurdistanê ye“ û wiha berdewan dike: “Em dijatiya pêşmergeyan nakin, lê hebûna wan li Nînewa ne destûrî ye, hebûna wan ne rewa ye û em daxwaza vekişîna wan dikin.”*



# “Hûqûqa navxwe bi dawî bibe em dosyayê dibin Strasbourgê”

▶Parêzerên Hatîp Dîcle serî li Dadgeha Makezagonê dan.

▶Kanat: Eger ev dadgeh jî biryarek neyênî bide em ê dosyeyê bibin Strasbourgê.



**Azad Dîcle**

Bi mabesta mafên Hatîp Dîcle yên parlementeriyê şûnde bên standin, parezerên wî hewldanênên xwe gihandin asta herî jor. Levent Kanatê Parêzgerê Hatîp Dîcle ku li dijî biryara YSK’ê roja 27’ê Hezîranê serî li Dadgeha Makezagonê dabû, daxuyand ku ew biryarek erênî çaverê dikin û got piştî vê dadgeha hemû rêyên huqûqî yên navxweyî bi dawî dibin û got: “Wê gavê tenê rêyek li pêşiya me dimîne. Em ê bûyerê bibin Dadgeha Mafê Mirovan a Ewropayê”. Serlêdana ku Levent Kanat kiriye xwe dispêre xala 85’emîn a Makezagonê û Kanat da zanîn ku wan piştî hilbijartinê li Amedê mazbataya Dîcle standibûn. Kanat bi bîr xist ku Dadgeha Makezagonê li gor rêbaza yasayî divê di nava 15 rojan de biryarê bide û got, “Lê nayê wê wateyê ku em ê 15 roj bisekinin. Dema me serlêdanê kir ji me re gotin bila telefona we vekirî be dibe ku em biryarê zû bidin.”

### Dadgeha Makezagonê ligel hemû endaman dicive û biryar dide

Di vê navberê de Dadgeha Makezagonê roja 28ê Hezîranê, ji bo ku rewşa Mehmet Hatîp Dîcle ku parlementeriya wî ji aliyê YSK’ê ve hatibû xistin, lêbikole û raporekê amade bike, raportorek peywirdar kir. Yek ji parêzerên Hatîp Dîcle Cîhan Aydin derbarê xebata raportor de agahî dan Rûdawê. Aydin da zanîn ku ev raportor bi xwe dadwerekî ji Dadgeha Makezagonê ye û wê li ser dosya, rapor û biryaran bixebite û raportek amade bike û pêşkêşî Dadgeha Makazagonê bike. Aydin wiha axivî: “Wê ev raportor biryara YSKê, biryara Dadgehên Cezayên Giran ên 5’emîn û 6’emîn ên Amedê, biryara dadgehên ku berê Hatîp Dîcle darizandine û daxwaziyên me lêbikole. Wê bigihe encamekê û qenaeta xwe ya taybetî pêşkêşî Dadgehê bike, wê Dadgeh jî ligel hemû endamên xwe kom bibe û biryara giştî bide.”

### Parêzer li benda biryarek erênî ne

Herdu Parêzerên Dîcle Levent Kanat û Cihan Aydin jî biryarek erênî ji Dadgeha Makazagonê çaverê dikin. Kanat bibîr xist ku heta tenê meclisê mafê parlamenteriyê ji parlamenteran standiye, lê cara yekem e YSK vê tiştê dike. Kanat derbarê xala 85ê ku Serokê Dadgeha Makezagonê Haşim Kiliç bi zimanekî îndirek ji çapemeniyê gotibû, “Bila wexta wî bê em ê jî çend tiştan bêjin” got ku dadgeha navborî dikare xwe bispêre vê xalê û qedexeya YSKê ji holê rake. Derbarê helwêsta dadgehê de jî parêzerê Dîcle, Levent Kanat destnîşan kir ku eger dadgeh li gor normên demokratîk, aştî û azadiya ramanê tevbigere wê biryarek erênî bide û wiha axivî: “Di demokrasiyan de biryar û helwesta gel ji her tiştî girîngtir e. Dîcle ji aliyê hejmareke gel a zêde ve hatiye hilbijartin û em hêvî dikin ku dadgeh vê rastiyê bîne ber çavan. Wê demê wê biryara ku em hêvî dikin bê standin, ango hemû mafên Dîcle ên parlamenteriyê lê bên vegerandin. Lê eger biryarek çewt derkeve wê demê hemû rêyên huqûqî yên navxweyî bi dawî dibin û pêwîst dibe ku em bûyerê bibin Dadgeha Mafê Mirovan a Ewropayê ya li Strasbourgê.”





**M.Hatîp Dîcle niha di Girtîgeha Amedê Tîpa D de dimîne. Parêzgerên wî Cihan Aydin (jor) û Levent Kanat (jêr).**

### Di şûna Dîcle de Eronat çû Enqerê

Dawiya hefteyê Dadgehên Cezayên Giran ên 5’emîn û 6’emîn ên Amedê daxwaza serbest berdana 5 parlementerên din ên Eniyê red kiribûn. Parêzerê Dîcle Aydin Cîhan bibîrxist ku ji bilî wan du parlementerên CHPê û yek parlementerê MHPê jî ligel ku hatine hilbijartin hêj ji girtîgehê nehatine berdan û ne diyar e ka wê pêvajo çawa bidome.

Namzedê Bloqa Ked, Azadî û Demokrasiyê Hatîp Dîcle di 12’ê Hezîranê de li Amedê dengê zêdeyî 80 hezar hilbijêran wergirtibû û di 20’ê Hezîranê de jî YSK’ê bi biryareke parlementeriya wî hatibû xistin. Di şûna Dîcle de jî YSKê palamenterî da namzeda AKPê ya rêza 6. Oya Eronat.

### “Hûn vîna gel nas nekin em jî meclîsê nas nakin”

Meclîsa Tirkiyê roja 28ê Hezîranê bi beşdariya parlementerên nû ji bo sondxwarinê civiya. Lê di dîroka Tirkiyê de cara yekem hejmareke wisa zêde parlementer tevlî merasîma sondxwarinê nebûn. 35 parlementerên Eniya Ked, Demokrasî û Azadiyê tevlî sondxwarinê nebûn û di heman rojê de li Amedê civiyan, 135 parlementerên CHPê çûn meclîsê lê sond nexwarin. Ligel Oya Eronat hemû 327 parlementerên AKPê û 54 parlementerên MHPê tevlî merasîmê bûn û sond xwarin.

Parlementerê serbixwe yê Şirnexê Hasîp Kaplan, xwest YSK biryara xwe ya derbarê Hatip Dîcle de zû rast bike û mazbata wî dîsa bide wî.

Parlementerê Eniya Ked, Demokrasî û Azadiyê yê Şirnexê Hatîp Kaplan, li Konê Çareseriya Demokratîk a li taxa Turgut Ozal beşdarî civîna gel bû. Endam û rêveberên BDP'ê û Şaredarên herêmê jî amade bûn. Kaplan, derbarê neçûna Enqerê û komcivîna parlementerên Eniya Ked, Demokrasî û Azadiyê yê li Amedê got heta Dîcle tevlî wan nebe ew naçin parlamena Tirkiyê ya Enqerê û civînê koma xwe li Amedê dikin. Kaplan destnîşan kir ku parlamenter vîna gel e û wiha got: "Niha vîna gel di girtîgehê de ye. Eger hûn vîna gel rewa nebînin, em jî meclîsê nasnakin. 90 sal in hûn vî gelî nasnakin, êdî hûn nikarin 90 meh vî gelî bixapînin. Derdê me ne ew e ku em herin li wan kursiya rûnên. Yek perlamenterê me bi qasî 50 parlamenterê wan in."

# Grubên ciwanan ji partiyan hevgirtîtir in

▶Ciwan Yûsiv: Em beşek ji kolan û tevgera Kurd in.

▶Berzan Behrem: Bizava siyasî ya Kurd wisa kir ev grub ji hevdu cuda bibin.

**Besam Mistefa**

Ligel destpêkirina serhildana gelên Sûriyê di 15ê Adarê de ku li bajarê Deraa destpê kir, li navçeyên Kurdnişîn ên rojavayê Kurdistanê gelek grub û rêxistinên ciwanan hatin damezirandin. Nivîserekî Kurdê Sûriyê dibêje: “Grubên ciwanan ji ber lawaziya tevgera Kurd hatine pêş.”

Berdevkê Hevpeymaniya Xortên Sewa ku nêzîka 10 grubên ciwanan lixwe digire, Ciwan Yûsiv ji Rûdawê re ragehand ku niha 4 grubên serekî yên ciwanan li Qamişlo hene: Ciwanên Serhildanê, Cezîrê Berbi Civaka Sivîl, Îtîlafa Tevgerên Kurd û gruba Hevpeymaniya Xortên Sewa.

Ciwan Yûsiv amaje da ku piraniya van grubên ciwanan di destpêka nîsanê de hatine damezrandin û her yek ji wan bi corekî kar dike: “Van gruban berê jî kar dikirin, weke mînak di warê çand û civakê de bi navê Komela Berberoj grubeke me hebû, lê piştî destpêkirina şoreşa Sûriyê di meha adarê de, me gavek berbi pêşve avêt û me navê komela xwe kir Hevpeymaniya Xortên Sewa.”

Ciwan Yûsiv dibêje grubên ciwanan demek bû xwe ji bo rojeke weke îro amade kiribûn, lê da ku guman ji wan neyên kirin di warê çandî de kar dikirin: “Me hemûyan bîra wê yekê dibir ku rojek tê û Sûriyê tê guherandin, lewma gava Hevpeymaniya Xortên Sewa hat damezirandin, 10 grub bû.”

### Nakokî di navbera ciwan û bizava Kurd de

Navbirî ku ji bajarê Qamişlo bi telefonê ligel Rûdawê dipeyivî, behsa wê yekê jî kir ku wan zêde hewl dane ligel Gruba Ciwanên Serhildanê bibin yek, lê “Mixabin hewldana me ne serkeftî bû.” Derbarê sedemên serînegirtina hewldana wan jî, got: “Gelek sedemê hebûn weke germiya ciwanan, desttêwerdana partiyên siyasî û ciwanên me yên li Ewropa, lê ji her tiştî zêdetir dîktatorî û zordariya rêjîma Sûriyê ye, ku ev zêdeyî 40 sal in li Sûriyê heye. Lê hevahengiyeke girîng di navbera van 4 gruban de heye.”

Hinek caran di navbera bizava siyasî ya Kurd û grubên ciwanan de nakokî derdikevin. Ciwan Yûsiv dibêje: “Me weke Hevpeymaniya Xortên Sewa ji pêşî ve eşkere kir ku em beşek ji bizava siyasî û kolana Kurdî ne, em ne dijî ti partiyekê ne û hevahengî di navbera me de heye. Lê ji destpêkê ve partiyan dijayetiya me kir û grubên me parçe kirin. Ew di daxuyaniyan de piştgiriya xwe ji me re diyar dikin, lê di rastiyê de berovajî vê yekê dikin.”

### 7 grubên ciwanan hene

Lê Yûsiv eşkere kir ku hinek partî piştgiriya wan dikin: “Komîteya Hevahengiyê ku ji partiyên Azadî, Yekîtî û Şepêla Pêşerojê pêk tê bi hevahengî ligel me tevî xwepêşandanan dibin û piştgiriya me dikin û ji pêşî ve jî helwêsta wan ji ya partiyên din baştir bû.”

Niha 7 grubên ciwanên Kurd li bajarên Rojavayê Kurdistanê hene: Komcivîna Ciwanên Kurd li bajarên Qamişlo, Amudê, Efrînê û Şamê kar dike. Gruba Ciwanên Serhildanê li Qamişlo, Efrîn û Serê Kaniyê heye û li derve jî kar dikin. Gruba Hevpeymaniya Xortên Sewa, Hevpeymaniya Bizava Ciwanên Kurd li Sûriyê li Qamişlo kar dike. Îtîlafa Ciwanên Kurd li Heleb, Kobanê û Efrînê heye. Civata Bizava Ciwanên Kurd niha li Qamişlo çend gruban lixwe digire.

**Beriya ku grubên ciwanan dest bi xebatê bikin di nav bizava Kurd de lawazî hebû lê ciwanan li Sûriyê sînorên tirsê şikandin**

Berzan Behrem, nivîskarê Kurd ê ji Rojavayê Kurdistanê behsa rewşa grubên ciwanên Kurd li Sûriyê dike û dibêje: “Ji pêşiya serhildana gelê Sûriyê ve grubên ciwanan nêzîkî hev bûn û xwestin bibin yek û bi navê ciwanên Kurdên Sûriyê bipeyivin.”

Lê bi baweriya Behrem partiyên Kurd bûn sedemê belavbûna van gruban: “Bizava siyasî ya Kurd wisa kir ev grub ji hevdu cuda bibin, lê hevahengî di navbera wan de heye, roj bi roj nêzîkî hev dibin û karên hevbeş dikin.”

Berzan Behrem dibêje gava van gruban dest bi xebatê kirin valahiyeke berçav di nav bizava Kurd de hebû, herwiha lawazî di xwepêşandanan de hebû: “Lê ciwan tevgeriyan û xwestin sînorên tirsê li Sûriyê bişikînin.”


Li Rojavayê Kurdistanê di navbera grubên ciwanên Kurd de hevahengî heye û karên hevbeş dikin

Rojnameya “El-Şerqulewset“ derbarê kampanya çaksaziyê ya Serokê Herêma Kurdistanê de:

# Barzanî dest daniye ser projeyeke kurê xwe û kiriye milkê giştî

Li Kurdistanê li dijî gendeliyê bernameya çaksaziyê hat destpêkirin. Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê Dr. Fûad Hisên daxuyand ku prose bi ti awayî naye rawestandin.

**Rûdaw -** Dr. Fuad Hisên yê Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê di hevpeyvînekê de bo rojnameya “El-Şerqulewset“ got ku proseya çaksaziyê ya ku Serokê Herêma Kurdistanê dest pê kiriye wê bidome û "bi ti awayekî nayê rawestandin."

Dr. Fuad Hisên got ew niha di destpêka kampanya çaksaziyê de ne û destpêkê bi mijara erdê û şêweyê dabeşkirinê û herwiha projeyên hilberînê û zeviyên çandiniyê dest pê kirine û wiha berdewam kir: "Komîteya ku ji bo vê mebestê hatiye avakirin, ji bo diyarkirina xalên ne temam, berdewam karê xwe dike. Herwiha çend komîteyên din ên teknîkî û yasayî jî hene û wê di dahatûyê de bi beşdariya wezaretên hikûmetê karê pêdaçûn û lêkolîna hemû saziyên hikûmetê bikin. Proseyê dest pê kiriye û wê bi ti awayekî neyê rawestandin."

Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê amade nebû navê ti berpirsekî bide ku ketibe bin lêkolînê, ji ber ku li gor wî "tometbar bê tawan e heta tometa wî tê îsbat kirin." Dr. Fuad Hisên herwiha got ku ev proseyeke çaksaziyê ye û wê bi şêweyekî yasayî bê cîbicîkirin, lê ne bi tundûtîjiya şoreşgerî û wiha domand: "Ew programa ku serok Barzanî xistiye ber çavan armanca wê nêhêlana gendeliyê li her cihekî ye. Her ku ji navê wê jî diyar e ku ew programeke çaksaziyê ye, lê ne sizader e û wê bi şêweyekî şoreşgerî jî neyê cîbicî kirin, mîna ku hin kes çaverê dikin, ji ber ku Barzanî bi xwe jî çend caran berê hişdarî daye himber bikaranîna tundûtîjiya şoreşgerî bo pêkanîna xwestekên xelkê yên ji bo çaksaziyê. Ji ber ku ew tişt rewşê aloztir dike û ti encamê wê jî nabe, lê ev nayê wateya ku em çavê xwe li hin tiştan bigirin, ji ber ku di wê programê de pêwîstiya me bi hin nîştergeriyan heye bo derxistina îltîhabên gemarî di nav saziyên hikûmetê de. Em ê bi hemû awayekî pêngavên xwe di çarçoveyê wê programa çaksaziyê û di çarçoveya yasayê de bavêjin, ango dadgeh wê aliyê yasayî bigre destê xwe."

Rojnameya El-Şerqulewset dinivîse "ew behs û axaftinên ku niha hene derbarê lêpirsîna digel hin berpirsên mezin ên hikûmetê, hêviyeke mezintir daye kampanya Barzanî ya ji bo çaksaziyê. Bi taybetî ku ew daxwazî di projeyê opozisyona kurdî de jî nehatine, tevî ku opozisyonê jî projeya xwe ya ji bo çaksaziyê berçav kiriye. Lê Barzanî wek hestkirina bi pêwîstiya encamdana çaksaziyê, ji partiya xwe destpêkir û bi taybetî ji bazina nêzîkî xwe û hin zanyarî dayê behsa wê yekê dikin ku Barzanî dest daniye ser milkekî kurê xwe û ew milk kiriye projeyek ji bo berjewendiya giştî. Bi vê yekê jî ew cidîbûna xwe li ser encamdana çaksaziyê li ser asta hemû Herêma Kurdistanê nîşan dide."

# ‘Kurdên Rojava dikarin di 24 seatan de navçeyên xwe rizgar bikin’

- “Di dawiyê de wê hemû partiyên Kurd bi hevre îmze bikin.”
- “Kurd, ku rêjeya wan li Sûriyê ji sedî 13 ye, ne karê wan e ku rejîmê birûxînin.”
- “Ji sedî 85 nefta Sûriyê ji navçeyên Kurdî diçe.”

Fewzî Şingar ku demekê kadro û gerîllayê Partiya Karkerên Kurdistanê bû, di sala 2004ê de ji wê partiyê cuda bû û bi navê “Partiya Wîfaq a Kurd li Sûriyê“ partiyek ava kir. Şingar dibêje niha partiyên Rojavayê Kurdistanê di mesela beşdarîkirin û ne beşdarîkirina di xwepêşandanan de bûne du beş. Herwiha dibêje Kurd dikarin Rojavayê Kurdistanê rizgar bikin, lê şert û mercên hundir û derve wiha dikin ku partiyên Kurd wê pêngavê neavêjin.

**Rûdaw: Niha di nava partiyên kûrdî de kîjan dixwaze bi Hikûmeta Sûriyê re rûnê û kîjan beşdarîkirina di xwepîşandanan de bidomîne?**

**Fewzî Şingar:** Niha partî bûne du grûp. Beriya niha hewldanek hebû ji bo yekgirtina wan di bin navê “Civata Siyasî ya Partiyên Kurdî yên Sûriyê“ ku ji 12 partiyan pêkhatibû, lê piştî ku leşker û hêzên ewlekariya Sûriyê rewş tevlî xwînê kirin, vê yekê bandor xiste ser helwesta siyasî ya kurd û ji wan tevgera siyasî ya kurdî jî. Di encama vê yekê de her sê partiyên komîteya hemahengiyê (Partiya Azad a Kurd li Sûriyê û Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê û Baskê Musteqbel) biryar girtin ku beşdarî xwepêşandanan bibin û slogana wan jî wê bibe rûxandina rejîmê. Herwiha Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê (Baskê Ebdulrehman Alûçî) û me jî biryar da ku em xwepêşandanan bidomînin û beşdarî bikin û em alîgiriya wê yekê dikin ku guhertinê bingehîn di nava rejîmê de pêk bên, ji ber ku ev tişt bi çaksaziyê pêknayê.

**Beşar Esed hûn jî ji bo danûstanê vexwendibûn?**

Vexwendin giştî bû, gotin hemû partiyên Kurd dikarin bên bi serok re rûnin, lê me ew yek redkir.

**Hûn, ev 5 partî, weke partiyên biçûk ten dîtin, himber her du partiyên mezin: Partî bi serokatiya Dr. Ebdulhekîm Beşar û PYD ku nûnertiya PKKê dike. Gelo ev cudahiya di helwestan de çi bandor xistiye ser xelkê Rojava Kurdistanê?**

Partiya herî mezin niha Caddeya Sûrî û Tevgera Lawan e. Em û partiyên din jî di xwepêşandanan de beşdar bûn, lê yên ku erkê destpêkirin û domandina xwepêşandanan xistine ser xwe heta niha xort in. Partiyên mezin û biçûk nemane, partî ew in ku niha bi bûyeran re bin û roleke wan a bi bandor hebe û xwedî li caddeyê derkeve. Partî li ser vê bingehê mezin û biçûk dibe. Herwiha ez ne bawerim ku ev cudahiya di helwesta partiyên Kurd de gelekî bidome, lê li dawiyê wê hemû partî îmze bikin.

**Ji bo rûxandina rejîmê wê îmze bikin?**

Eger rejîm biryareke çarenivîsaz ji bo Kurdan bide, wê dîsa Kurd bibin yek û bi hev re îmze dikin. Eger dema rûxandinê jî bê, ez di wê baweriyê de me kesên ku niha hinekî bi hestiyarî nêzîk dibin, bi sedema rewşa Kurdan, em ê wê demê jî bi hevre îmze bikin.

**Partî dibêje em bi rêya grûpên xortan beşdar in, gelo bi rastî jî 9 partiyên Civata Siyasî di xwepêşandanan de beşdar in?**

Ti partiyek nikare alîgirên xwe kontrol bike, eger partî bangî xelkê xwe neke jî, xelk bi xwe tevlî dibin. Partiyên ku biryara tevlîbûnê nedane, xelkê wan jî beşdar e.

**Xelkê ku niha li Sûriyê xwepêşandanan dikin kî ne?**

Hemû pêkhateyên Sûriyê ne, Durzî, Îsmaîlî, Sunniyên ereb, Elewî û hemû ne.

**Niha rewş li Rojavayê Kurdistanê çawa ye?**

Heta niha rewş yekalî nebûye, ne partiyan kariye bi şêweyekî plankirî rewşê kontrol bikin û ne caddê kariye xwe ji partiyên siyasî qut bike. Siyaseta hikûmetê ya heta niha jî ew bû ku navçeyên kurdî bêalî bihêle û dibêje ‘em ê neçin ser wan, ew hemû rojên înê radibin û rûdinin, çi bibêjin bila bibêjin’. Em jî wiha fikir dikin ku Kurd wê di guhertinê de beşdar bibin, lê ew ne karê Kurdan e ku rejîmê birûxîne. Ji ber ku Kurd di Sûriyê de neteweya duyemîn in, ji 14 parêzgehên Sûriyê tenê yek jê ya Kurdan e, ji 23 milyon rûniştvanên Sûriyê nêzîkî 3 milyon û 500 hezar Kurd in.

**Li gor Neteweyên Yekbûyî heta niha 1300 xwepêşander hatine kuştin, gelo di xwepêşandanên Rojavayê Kurdistanê de ti Kurd hatine kuştin?**

Nexêr.

**Leşker ji navçeyên kurdî hatiye kişandin?**

Leşker li herêmên Kurdan tune, piştî xwepêşandanên sala 2004ê tabûra 14. anîn wir, ew li Dêrikê, Amûde, Dirbesiyê û Hesekê hatin bicihkirin. Piştî van xwepêşandanan ew tabûra leşkerî ji navçeyên Kurdan hatin kişandin. Niha ewlekariya navçeyên kurdî di destê polîs û grûpên îstixbaratê de ye, ew jî hêzeke hindik e.

**Eger Kurd niha bixwazin wê karibin navçeyên xwe ji destên Sûriyê rizgar bikin?**

Belê, Kurd dikarin di dema 24 demjimêran de destên xwe deynin ser navçeyê ku Heseke jî di nav de be, ango navçeya Cizîrê, lê Efrîn û Koban ji wê navçeyê qutkirî ne. Ew jî dikarin serî hildin, lê rewşa wan hinekî zehmetir e. Lê ji bo ku ew azadbûn bibe tiştekî bingehîn, pêwîst e parastin û alîkariya aborî danin pêşiya xwe.



Di nexşeriya Sûriyê de li bakur cihên reşkirî herêmên Kurdan in.


Serokê Partiya Wifak a Kurd li Sûriyê Fewzî Şingar

Wêne: Rûdaw

**Gelo îmkanên aborî yên Rojavayê Kurdistanê tune?**

Ji xwe Hikûmeta Sûriyê navê wê kiriye Cizîre, ji ber ku cihê çandiniyê ye û bêtirî ji sedî 85ê nefta Sûriyê ji cem me derçe.

**Gelo piştî vekişîna leşkerî, we weke partiyên kurdî ti caran fikra azadkirina Rojavayê Kurdistanê nekiriye?**

Ti partiyên kurdî li Sûriyê heta niha dirûşma serxwebûn û cudabûna ji Sûriyê hilnedaye, tiştê duyem jî divê rewşa hundir û navnetewî jî ji vê yekê re amade be.

**Sala 1991ê dirûşma bereya Kurdistanî li Başûrê Kurdistanê jî ne cudabûn bû, lê Başûrê Kurdistanê rizgarkirin. Hûn çima vê yekê nakin, ji xwe eger hûn zêde ji Sûriyê hez dikin jî hûn dikarin piştî rûxandina rejîmê dîsa xwe pêve girêbidin, mîna tiştê li Îraqê sala 2003ê hat kirin?**

Ev tişt girêdayî rewşa me Kurdan e li Sûriyê, ji ber ku hejmara me Kurdan li Sûriyê kêm e, cografya me biçûk û ji hev qutbûyî ye û herwiha em şirîkên Sûriyê yên hebûn û nebûnê ne.

**Gelo ev ne nîşana wê yekê ye ku hûn partî nûnertiya îradeya gel nakin? Ji ber ku 2004ê jî xelkê ala Kurdistanê bilind kirin û niha jî wiha ye.**

Lê ev dîsa girêdayî şert û mercan e. Herwiha eger kêmasiyên partiyên kurdî li Sûriyê hebin jî, lê ew partî ev bêtirî 50 sal in di bin zordariya Baasa Sûriya de ne û eger wan tiştek jî nekiribe, wan kariye daxuyaniyan derxin û bêjin em Kurd in li Sûriyê. Lê ev jî rast e ku divê partî nûnertiya îradeya gel bikin.

**Bandora PDKê û PKKê li ser caddeya kurdî li Rojavayê Kurdistanê heye. Heta niha helwesta PDKê ne zelal e, helwesta PKKê di çend daxuyaniyên Abdulla Ocalan de diyar bû ku xwest Kurd danûstandinê bi Hikûmeta Sûriyê re pêk bînin. Gelo vê yekê çiqasî bandor li raya giştî kiriye?**

Ti planeke PDKê tune ku kar li ser caddeya Sûriyê bike. Lê weke eşîret û binemale hene, hin ji wan li wî alî û hin jî li vî aliyê Sûriyê ne, herwiha şoreşên Kurdên Îraqê û bi taybetî şoreşa rehmetî Barzanî bandor çêkirine. Derbarê helwesta Partiya Demokrat a Kurdistanê, bi baweriya min hêjî zûye ku em bêjin çima PDK derbarê Kurdên Sûriyê biryarekê nade, ev herwiha mijareke navxweyî ya Sûriyê ye. Vêca Yekîtî be, yan Partiya Demokrat, an jî Komela Îranê be, vê meseleyê ji partiyên Kurdên Sûriyê re dihêlin ku ew bi xwe biryara xwe bidin. Bêguman weke meseleyeke Kurdistanî, erkê her Kurdekî ye ku piştgîriya perçeyên din ên Kurdistanê bike.

**Hûn weke Kurd û partiyên Rojavayê Kurdistanê di vê rewşa niha de, çi hêviyeke we ji Herêma Kurdistanê heye, weke tek beşa azad a Kurdistanê?**

Em hêvîdar in ku di dema pêwîst de di hemû warekî de alîkariya gelê Kurd li Sûriyê bikin. Partiyên Kurdên Sûriyê niha li vir hene û di sazkirina semîner û axaftinê de ew azad in. Hikûmeta Herêma Kurdistanê nikare her tiştî bike, ji ber ku pirsgirêkên wê jî pir in, ji aliyekî rokêtên Îranê û ji aliyê din topên Tirkiyê li wan dibarin. Herwiha dibe ku Hikûmeta Bexda jî ji tiştekî wisa re ne amade be, helbet Herêma Kurdistanê jî beşekî Îraqê ye. Loma em jî zêde barê Hikûmeta Herêma Kurdistanê giran nakin.

**Çend kongreyên opozisyona Sûriyê hatine sazkirin. Hûn wêneyê rewşa Kurdan li Sûriya piştî rûxandina rejîma Baas a Sûrî çawa dibînin?**

Bi rastî pirsgirêka me Kurdan bi giştî ew e ku karnameyeke me ya hevbeş tune, heta niha yek kaxeta me ya bi wê şêweyê tune ku em bidin opozisyona Sûrî, yan rejîma Sûriyê, ji ber ku rejîm jî dibêje hûn çi dixwazin? Ev jî ji bo qonaxa piştî rûxandine rejîmê pirsgirêkek e. Ji ber vê yekê gelekî girîng e ku partî û rewşenbîrên Kurdan hemû bi hevre rûnin û civatekê pêk bînin, sêwanekê bo karê hevbeş avabikin, ji ber eger ev neyê kirin em ê zirarê bibînin. Em geşbîn in ku em dikarin wê yekê pêkbînin. Ji bo Kurdistana Îraqê di kongreyên London û Selahedîn de hemû opozisyona Îraqê li ser çend xalan lihevkirin, lê me weke Kurd û weke opozisyona Sûriyê jî me ew hêlên fireh nedanîne.

## Raporta narkotîkê ya Herêma Steiermark: Restorantên Kurdan bûne cihê bazara narkotîkê

*Koln (Rûdaw) - Li gor raporta îsal a narkotîkê ya Herêma Steiermark li Awustûrya, sala borî Kurd berbiçav ketine nav bazara narkotîkê ya li Herêma Steiermark. Dikanên kebaban û restorantên Kurdan jî weke cihên bazara narkotînê tên destnîşan kirin. Li gor raporta ku ji aliyê Wezareta Navxwe hatiye amadekirin, navenda bazara narkotîkê ya li Herêma Steiermark, bajarê Graz e û bazar bi giranî di destê biyaniyan de ye. Di navbera wan komên biyanî de rikberiyek dijwar tê meşandin.*

*Raport eşkere dike ku bazara marihuana, eroîn û kokaînê bi giranî di destê komên çermreşik de ye, di wan çermreşikan de jî kesên ji Nîgeryayê herî zêde derdikevin pêş. Di raportê de behsa Kurdan jî tê kirin û tê gotin ku sala 2010ê Kurd berbiçav ketine bazarê û cihê bazara Kurdan bi madeyên narkotîkê piranî dikanên kebaban û restorant bûne. Li gor texmînên saziyên Kurdan li Awustûryayê û saziyên fermî, hejmara Kurdan li wî welatî derdora 100.000 kes e û piraniya wan ji bakurê Kurdistanê ne.*



# Zelal xwest, ala Kurdistan hat daliqandin!



Wêne: Rûdaw

Zelal bi kêfxweşî û rûyê ken ala Kurdistanê nîşanê me dide.

▶Zelal hêj sê salî ye û li Velbertê diçe bexçeyê zarokan

▶Zelal rojek li dîwar navê xwe li ser ala tirkan dibîne û digirî.

▶Malbata Zalalê ala Kurdistanê dide mamoste û al ji bo Zelalê tê daliqandin.

**Alan Ken** Velbert

Zelala 3 salî ya ku li bajarokê Almanya Velbetê dijî, nexwest di dibîstana xwe de bi ala Tirkiyê were temsîlkirin. Ji ber vê yekê giriya û bi zora xwe li dibistana xwe ala Kurdistan da daliqandin. Dayîka Zelal Îpek Încekana jî dibêje her tişt girêdayî tekoşînê ye û bang li hemû malbatên kurd dike ku "bi rengên xwe werin temsîlkirin."

Malbata Încekan ji Bakurê Kurdistanê, ji navçeya Tekmanê ya ser bi bajarê Erziromê ye. Malbat bi salan e li Almanyayê dijî. Zelal keça Metîn û Îpek Încekan a herî biçûk e.

Ew niha 3 salî ye û diçe baxçeyê zarokan. Zelal wek her rojê serê sibe radibe û bi dayîka xwe re diçe baxçeyê zarokan. Lê dinêre ku ew dîwarên rût ên hundirê sinifa wan bi alan hatine xemilandin. Alên cuda cuda û renga reng. Navê her zarokekî baxçeyê zarokan jî li alekê hatiye nivîsandin.

Ew zarok ji kîjan welatî hatine, navî wê zarokê li ser ala wî welatî ye. Zelal navê xwe jî li ser alek sor de dibîne, lê ew vî tiştî qet naecibîne. Dengê xwe jî li wir dernaxe, lê ji bîra wê naçe. Gava tê malê hema dest bi girî dike…

**Zelal: Ev ne ala Kurdistanê û Apo ye**

Ji vir şûnde çîroka Zelala 3 salî em ji dayîka wê Îpek Încekanê guhdarî bikin: "Bû êvar Zelal ji baxçeyê zarokan hat malê. Min dît dest bi girî kir, xwe aciz kir û got 'Ew ala sor ne ala min e. Ev ne ala Kurdistanê û Apo ye. Ez wê naxwazim. Ji bo çi navê min li ser wê alê hatiye nivîsandin? ' Min destpêkê mebesta Zelalê fêm nekir ku çî dibêje. Lê paşê ez têgihiştim ku li baxçeyê zarokan meseleya alê derketiye holê. Em sibe rabûn û çûn baxçeyê zarokan û min dît ku navê Zelal û keçek kurd a din li ser ala Tirkiyê hatiye nivîsandin. Me ev qebûl nekir. Ez bi rêveberiya dibîstanê re axivîm û min got 'Em ne Tirk in, ji ber wê yekê em vî tiştî qebûl nakin.' Li ser van gotinên me wan ji me re astengî dernexistin û gotin 'ala welatê xwe binîn li vir daliqînin.' Niha navê Zelal û ya wê keça kurd ya din li ser ala Kurdistanê hatine nivîsandin. Ew ala me jî wek alên gelên cîhanê li wî dîwarî hatiye daliqandin. Ev tiştekî gelekî xweş e. Zelal jî, em jî gelek kefxweş in." Zelala 3 salî keyf û memnûniyeta xwe bi kişandina wêneyê xwe li ber ala Kurdistanê dide nişan. Îpek Încekan, dayîka Zelalê bang li hemu dêbavên kurd dike ku eger pirsgirêkên wiha derketin holê li mafê xwe bigerin û heta tekoşîna hiquqî jî bimeşînin û dibêje "Hûn ne mecbûr in di bin aleke din de bên naskirin".

**Dayika Zelalê, Îpek Încekan bang li malbatan dike: Li mafên xwe bigerin, hûn ne mecbûr in di bin aleke din de bên naskirin.**

## Kêmendam û sê hefteyan winda ye

# Malbat li Samî digere



**Koln (Rûdaw) -** Samî Celal Hamo yê 22 salî beriya 6 mehan hatiye Almanyayê û li kampa penaberan dijiya. Samiyê ku bi almanî nizane û kêmendam e, beriya 3 hefteyan ji kampê derket ku biçe serdana mirovên xwe li bajarê Wittenê, lê heta niha jî negihaye û ji hingî ve winda ye.

Samî Celal Hamo ji Başûrê Kurdistanê ye û xortekî Kurdê êzîdî ye. Samî hem ji aliyê fikrî û hem jî ji aliyê fîzîkî xwedî pirsgirêkan e. Eger mirov bi Samî re biaxive jî, dibe ku Samî bi hêsanî tênegihije ka çi ji wî tê xwestin, ji ber ku heta radeyekê kerr e (nabihîse), herwiha ew bi almanî jî nizane, tenê çend gotinên îngilîzî dizane. Ew û birayê xwe beriya 6 mehan ji welat koçber bûn û hatin Almanyayê. Samî û birayê xwe li kampa penaberan a li bajarê Neuwiedê hatibûn bi cîh kirin. Li bajarê Wittenê li herêma NRW mirovên Samî dijîn û Samî çendîn caran serdana wan kiriye. Pizîşkî Samî yê guh, bêvil û qirikê jî li bajarê Wittenê ye û Samî li wî bajarî tedawiya xwe didît. Samî roja 6ê Hezîranê ji bo serdana mirovên xwe bi rê ket û ji wê demê ve winda ye. Mirovên Samî ku ew ê biçûya serdana wan, bi gelek rêyan li Sami digerin, heta bi rêya malpera Facebookê jî.

Jassim Memo, ku niha li bajarê Wittenê dijî û berê cîranekî Samî bû, dibeje ku "Samî rêya hatina bi trênê ya bajarê Wittenê baş dizane, ji ber ew çend caran hatiye vî bajarî û beriya demeke kin ew ji bo hefteyekê hatibû cem xalê xwe yê li Wittenê." Malbat û nasên Samî bi tirs û guman in ku tiştek hatibe sere Samî û bi belavok û afîşan û hem jî di gelek malperên înternetê yên derbarê kesên winda de û heta di Facebookê de jî banga dîtina Samî belav kirine. Salam Hukmat Hamo (20) yê pismamê Samî dibeje ku wî telefonî hemû mirovên xwe kiriye û pirsiye ka Samî hatiye cem wan û got, "Ew hevalê min ê herî baş e, her şev em bi telefonê demek dirêj bi hev re diaxivîn."

Polîs jî bi segên şopandinê li Samî geriyan, lê segan jî şopa Samî winda kir. Polîsên Neuwiedê ji Rûdawê re diyar kirin ku tevî ku mijar di rojnameya herêmî de belav bû jî, lê heta niha jî ti şopa Samî nehatiye dîtin. Xwedîlêderketin û hewldanên kesûkarên Samî bandora xwe li ser serkomserê Ingo Weber jî hişt. Weber dibeje ku wî heta niha ti caran nedîtiye ku hewqas kes û bi awayekî wiha çalak û fedekar li kesekî hatiye gerîn, lê dibeje "bi her roja ku derbas dibe, şansê bi zindî dîtina kesekî windabûyî kêmtir dibe."



# Yûnan jî berê xwe didin Kurdistanê

**Hawar Ebdulrezaq**

Roja 19ê hezîranê bi mebesta vejandina pêwendiyên aborî û bazirganî di navbera Atîna û Hewlêrê de, li Hewlêrê kongreya amadekarî ya vekirina Navenda Avakirin û Hilberînê ya Kurdî-Yûnanî hat li dar xistin. Serokê Navenda Avakirin û Hilberînê ya Kurdî-Yûnanî ragehand ku niha dema wê yekê ye ku yûnanî berê xwe bidin Herêma Kurdistanê û hilberîn û bazirganiyê bikin.

Li gor agahiyên saziyên fermî yên yûnanî û saziyên kurdan li Yûnanistanê, hejmara Kurdan di navbera 20-25 hezar kesî de ye û piraniya wan bi riyên qaçax û bi mebesta xwegihandina welatên rojavayê Ewrûpa çûne wir. Hinek ji van Kurdan li Yûnanîstanê mane û kar dikin, li wir jin anîne û mal ava kirine.

Rêveberê hilbijartî yê Navenda Avakirin û Hilberînê ya Kurdî-Yûnanî Zisîs Makres ji Rûdawê re ragehand: “Em li Yûnanîstanê ev çend sal in ligel Kurdan dijîn. Berî çend salan qet me bawer nedikir ku em ê bên Kurdistanê û niha jî dema wê yekê hatiye ku yûnanî bên Kurdistanê.”

Derbarê vekirina Navenda Avakirin û Hilberînê ya Kurdî-Yûnanî Zisîs Makres dibêje: “Mebest ji vekirina vê navendê bo wê yekê ye ku Kurd û Yûnan bêtir nêzîkê hevdu bibin û rola min jî ew e ku şirketên mezin ên yûnanî teşwîqî Herêma Kurdistanê bikim.”

Makres dibêje warên ku yûnanî dikarin di wan de hevkariya Herêma Kurdistanê bikin bînasazî, pîşesazî û tûrîzm e.

Xwediyê ramana vekirina vê navendê Dr. Serbest Zaxoyî ku nûnerê PDK li Yûnanîstanê ye, ji Rûdawê re eşkere kir ku ew dixwazin bi riya vê navendê berjewendiyên welatên Ewrûpa têxin Kurdistanê.

Cîgirê serokê vê navendê Dr. Markos Komninaks ragehand ku ew tenê tekeziyê li ser warê aborî û bazirganî nakin, lê wan aliyê perwerdeyî jî liberçav girtine û yek ji xalên ku tê de dixebitin ew e ku xwendekarên zanîngehên Kurdistanê li zanîngehên Yûnanîstanê bixwînin: “Kurdistan herêmeke nûgihîştî ye û bazareke nû ye, gelek Kurd li Yûnanîstanê hene, ji niha şûnde Kurd jî wê gelek yûnaniyan li Kurdistanê bibînin.”

Ji bo piştgiriya xwenîşandanên li Rojavayê Kurdistanê, Kurdên Ewûpa jî li qadan in, lê...

# Çima Kurdên Rojava di bin ala Ereban de dimeşin?

Di çalakiyên li dijî rejîma Baas de kêm alên Kurd, lê zêde alên Sûriyê tên rakirin. Amadekarên çalakiyê dibêjin ev ji bo yekîtiya Kurd û Ereban çêtir e.

**Reşad Ozkan** Munchen

Di 25ê hezîranê de li navenda bajarê Munchenê, Karlsplatzê nezikî 60 xwepêşandarên kurd û ereb ji bo şermezarkirina rejîma Baas a Sûrîyê kombûn. Çalakiya protestoyê ji aliye înisiyatîfa “Freiheit fur Syrian-Azadî” ve hat li dar xistin. Kombûn di saet 17:00 de dest pê kir û sê saet dom kir.

Li meydana Karlsplatzê dema ku jin, mêr û gelek zarokên biçuk hatin cem hev, 20 mêtre dûrê wan komeke polîs jî mîtinge temaşe dikirin. Rûniştvanên Munchenê yên Alman heta ji destên wan tê xwe nezikî çalakvanan nakin. Xortê kurd Bengîn û hevalbendên wî amadekarên çalakiyên li dijî rejîma Sûriyê ne û endamên Partiya Yekîtiya Kurdên Sûriyê ne. Bengîn da zanîn ku heta diktatoriya malbata Esad hilweşe wê çalakiyên xwe bidomînin. Lê belê gelek Kurdên ku tevlî xwepêşandanê bûn rexne li Bengî û hêza wan a siyasî digirin. Hinek Kurdên Efrîne nerazîbûnên xwe anîn ziman û gotin “Çima Kurd di bin ala Sûriyê de dimeşin û ka ala Kurdistanê?” Em ji hinek Kurdên Bakur dipirsin ka ew herdem tên wan çalakiyan? Dibêjin “ere”. Di nav wan de kalekî porspî ku nezikî 40 sal in li Munchenê dijî, nefesa xwe dikişîne hundire xwe û gotina xwe wiha dibêje: “Di hefteyên borî de pir alayên Kurd hebûn, ma çima îro tune ne? Kesên ku li vir in piraniya wan Kurd in, Ereb pir hindik in”.

Berdevkê Azadî/Yekîtiyê Bengî li ser rexneyên Kurdan bo Rûdawê axivî û got: “Di çalakiyên me yên borî de em bi ala Kurdan derdiketin kolanan, lê ew di navbera Ereb û Kurdan de bû sedemê pirsgirêkek mezin. Em niha di çalakiyan û di mîtîngan de tenê alayên Sûriyê hildigrin. Ew tişt li gor bîr û baweriya me ji bo yekîtiya Ereb û Kurdan baştir e û bi vî awayî di navbera me de nakokî dernakevin.” Caketê xwe ji xwe datine û sînga xwe nîşanê min dide û dibêje: “Mêzeke! Em Kurd li şûna ala Kurd tişortên bi rengê herdu alayân hildigrin.”

Li gor hinek agahiyên din jî nehilgirtina “ala Kurd” biryarek hevkarî û siyasî ye û ji aliyê partiyên opozîsyona Sûriyê hatiye girtin.

Ev çalakvan di çalakiyên meha borî de bi ala Kurd dimeşiyan û niha jî hilgirtina ala Kurd ji wan re kedexe ye!



Wêne: Rûdaw

Xorte kurd Bengî: “Ji bo yekîtiyê em di bin ala Sûriyê de dimeşin“

# 2. tûrnovaya tîmên Kurdên êzîdî li dar dikeve



**Koln (Rûdaw) -** Piştî ku sala borî li bajarê Almanya Celle 1. tûrnovaya futbolê hat li dar xistin, îsal 2. tûrnovaya futbolê ya tîmên Kurdên êzîdî li bajarê Bergenê (nêzîkî bajarê Hannover) tê li dar xistin. Tûrnovaya ku wê îsal ji bo bîranîna keça êzîdî Behiye Yaşit (Hacer) bê lidarxistin, heşt tîmên êzîdiyan ji bakurê Almanyayê wê tevlî bibin. Ji amadekarên tûrnovayê, Xeyredîn Açlan ji Rûdawê re got ku tûrnova ji aliyê Komisyona Ciwanên Êzîdiyan ve ji bo cara duyemîn tê organîzekirin û armanca wan ew e ku ciwanên êzîdî û tîmên wan bînin cem hev. Komisyona Ciwanên Êzîdiyan sala borî bi armanca lidarxistina çalakiyên sporê li Celle hatibû damezirandin û ev 2. çalakî ye ku ji liyê vê komisyonê ve tê organîzekirin. Xeyredîn Açlan ku di heman demê de serokê 2. yê tîma FC Firat Bergen e (di lîga amator a Bezirksliga de dileyîzin) got ku li Almanyayê derdorê 15-20 tîmên Kurdên êzîdî hene û ew bi hêvî ye ku di salên peş de tûrnova hîn berfirehtir bibe.

**Tîmên beşdarî tûrnovayê dibin:**

SV Dicle Celle, **FC Firat Bergen**, SV Ciwan Walsrode, **Inter 07 Celle**, Inter 08 Burgdorf, **SV Mardin Sulingen**, SV Inter Komata Nienburg, **FC Rojhilat**

**Dem:** 02.07.2011
**Saet:** 10.00
**Navnîşan:** Sportplatz am Heisterkamp 29303 Bergen

**Info:** 0173- 3782 606




Sê tîmên keçan ên Dalkurdê hene, leystikvanên yek ji van tîman keçên Swêdî ne.

# Keçên Dalkurdê ji xortan serkeftîtir in





**Mehmet Sebatli**

Klûba Dalkurdê ya Kurdên Swêdê heta du sal berê tenê ji aliyê çapemeniya swêdî ve û kurdên ku li wî welatî dijîn, dihat naskirin. Li gor swêdiyan Dalkurd tîmeke Kurdan bû û futbolvanên wê hemû xort bûn; Kurdên swêdê jî wê weke tîma nisêbîniyan nas dikirin. Lê sezonên bi serkeftî her ku derbas bûn nav û îmaja Dalkurdê jî hat guhertin. Niha di nav Dalkurdê de hejmareke zêde leystikvanên bi eslê xwe ne Kurd hene. Ango Dalkurd her diçe dibe wek tîmeke Ewropî ya normal. Dalkurd herwiha zayîndeya xwe jî guhert û êdî ne tenê klûbeke xortan e. Niha sê tîmên keçan di bin baskê Dalkurdê de futbolê dileyîzin. Yek ji van tîman ji keçên swêdî pêk tê û herdu tîmên din jî ji keçên Kurd.

### "Me ew dişopand, wan jî em dişopandin

Tîma keçên swêdî dema di meha dawî ya sala borî de tevlî Dalkurdê bû, ligel mamostayên xwe tîmeke avakirî û xwediya ezmûneke berbiçav bû. Ew di lîga 5.de dileyîstin û ji ber ku klûba wan belav bû nekarîn derbasî lîga 4. bibin. Serokê Klûba Dalkurdê Ramazan Kizil daxuyand ku wan ji berê ve van keçan nas dikirin û dişopandin û got, "Dema sala borî bi mabesta ku em alîkariya wan bikin hatin cem me û gotin ku ew serkeftinên Dalkurdê dişopînin." Navbera 22 keçên swêdî yên futbolvan û rêvebeRiya Dalkurdê de peymanek tê îmzekirin û ev keçên temenê wan navbera 18-20 de ne tevlî Dalkurdê dibin. Kizil got: "Tîmeke amade bû, avakirî bû, naskirî bû û heta ku du mamostayên wan jî hebûn."

Li gor peymanê Dalkurd wek perê endamtiyê salê 120 euro ji her keçekî distîne û hemû mesrefên tîmê jî dide ser milê xwe. Mesrefên tîmê jî Kizil wiha rêz kirin: "Di saheya me de antrenman dikin, pereyê mamosteyên wan, cil û formeyên wan, hatin û çûyîna wan a bo maçan hemû em digrin ser xwe."

### 65 gol avêtine û lîder in

Tîma Keçan a Dalkurdê di sezona îsal di lîga 5.mîn a jinan de ji 8 maçan 7 serketiye, yek jî beramber maye. Jiber ku tîmeke xwe ji lîgê vekişand 6 serkeftin û yek jî beramberî tên hesibandin û bi vî rengî 19 pûanên wan hene û lîderê lîgê ne. Hefta borî 12 gol avêtin qeleya hemberê xwe û sezonê nîvî kirin, wê nîva sezonê ya din di serê tebaxê de dest pê bike. Li gor Ramazan Kizil tîma wan a ku heta niha 65 gol avêtine û tenê du gol xwarine, ji sedî sed derbasî lîga jor dibe.

### Tîmên keçên Kurd ên 12 û 10 salî

Di bin baskê Dalkurdê de du tîmên keçan ên temenê wan biçûk jî hene. Yek ji wan keçên 12 salî ne û ya din jî keçên 10 salî ne ku tenê du sê leystikvan ne Kurd in û yên din hemû Kurd in. Ji bo tîmên temenê biçûk lîga taybet nîne, lê li gor temenên xwe bi tîmên wekhev re dileyîzin û dema temenê wan dibe 17 an jî 18 tevlî tîmên lîgê dibin. Li gor agahiyên ku Kizil dane me herdu tîm heta niha 8 maç leyîstine û di hemû maçan de jî biserketine.







Wêne: Rûdaw

# Geştek bo biheşta ser erdê: Keşmîr

**Tara Qadir** Camokeşmîr

Sadebûna jiyanê nîşaneke xweşik a gundan û beşekî mezin ê herêma dilrevîn a Keşmîr e. Keşmîrî milletekî destrengîn û karker in û sûdê ji zevî û dehlên qenc û têrav werdigirin, bo dabînkirina pêdiviyên herêmî ji berhemên weke qirşik, titûn, gûz û meyê heya zaferan, çîlekan. Ew gewheran dişînin sûkên Hindistan û deverên dûr ên cîhanê.

Camokeşmîr ku weke buhişta ser erdê tê wesifkirin, dikeve bakurê Hindistanê û sînorên wê yên hevbeş li gel Çîn û Pakistan hene û piraniya xaka wê dikeve navçeya Hîmalaya. Cihê Keşmîrê stratejîk e û bakur û başûrê `Asia` bi hev ve girêdide. Xaka wê 86 023 km 2 e, li ser Hindistan û Pakistanê dabeş bûye. Hejmara xelkên herdu beşên wê nêzîka 13 milyon kes in.

Herêma Camokişmîr ku ser bi Hindistanê ye ji çend navçeyan pêk tê: Camo, Keşmîr Wadî, Ladax. Her navçeyek jî çend bajaran lixwe digire. Zimanê fermî "Kişmîrî" ye, lê zimanên hindî û îngilîzî jî li Keşmîrê berbelav in.

Piraniya rûniştvanên vê herêmê misilman in lê hindus, sîx û bûdîst weke kêmolan lê dijîn.

### Xebateke berdewam bo serxwebûnê

Kişmîr Wadî ku weke Kişmîr tê binavkirin, di aliyê xwezayî de heya astekê dişibe navçeyên zozanî yên Kurdistanê, ji çiyayên wê heya berhem, qilafet û rengê çermê xelkên wê. Di aliyê siyasî de ev herêm bûye cihê hevrikiya Hindistan, Pakistan û Çînê. Xelkên wê jî daxwaza serxwebûn û cudabûnê ji Hindistanê dikin û ev çend sal in bo vê yekê têkoşînê dikin.

Paytexta havînî ya Keşmîr bajareke bi navê Srînagar ku weke bajarê gol û çemên zêde û gemiyên mezin ku bi awayê xaniyan hatine avakirin, tê naskirin.

Yek ji ciwaniyên bajarê Srînagar pirbûna av û çem û kahrêzên nav bajar in ku bi riya wan xelkê wê jiyana xwe dimeşînin û piştre weke cihekî geştiyarî yê balkêş sûdê jê werdigirin. Ji xênî wê yekê jî bi qeyikên biçûk aşyayên xwe tînin ser Golan da ku wan bifiroşin tûrîstan. Tiştê ku bajarê Srînagar ji piraniya bajarên cîhanê cuda dike, ew e ku geştiyarên wê bi piranî di nav qeyikeke biçûk de ne ku jê re dibêjin Şîkara û bo çûn û hatinê tên bikaranîn.

Li bajarê Srînagar havînê ji bo cihê vehewandinê, ji bilî otelan, gemî jî tên bikaranîn û ji wan re dibêjin House Bot ku bi awayekî tên xemilandin.

Ava zêde û dîmenên ciwanên vî bajarî wisa kiriye ku bi Vanessa ya Îtalyayê bê şibandin, lewra paytexta Kişmîr weke Vanessa ya Hindistanê tê binavkirin.

### Pehlgam weke Hewraman e

Du baxên kevin û balkêş li Srînagar hene ku hê jî dîmenê bajarê têrav ciwantir kirine û bala tûrîstan kişandine, ew jî pêk tên ji Nîşat Bax ku dîroka avakirina wê vedigere sala 1633ê.

Pehlgam cihekî din e ji cihên geştiyarî yên navdar li Kişmîrê. Ev bajarok heya astekî zêde dişibe navçeya Hewraman, xelkê wê jî di aliyê awayê çerm, bilindî û rûçikê mirovan de, herwiha xweşikiya xwezayê û hebûna berhemên weke gûz û hejîr û xwedîkirina sewal û dewaran, weke Hewraman dixuye.

Pehlgam navçeyeke sar e, lewma di demsalên navîn de jî cil û bergên germ bikar tînin. Yek ji van cil û bergan weke "betaniyê" mildirêj e û jê re dibêjin Fîrn. Tiştê pir balkêş ew e ji ber dijwariya sermayê xelkê wê navçeyê selikeke perengên agir bi dest digirin ku di bin fîrneya wan de ye bo xwegermkirinê. Gava pêdiviya wan bi destên wan be bo bicihkirina karekî, hingî Kangirîya xwe dixin nav lingên xwe de bêyî ku ti devera wan bişewitîne.

**Keşmîr jî wek Kurdistanê perçekirî ye: Ji %63 erdê wê di destê Hindistanê de, %35 di destê Pakîstanê de û %2 di destê Çînê de ye.**

Yek ji dîmenên ciwan û balkêş yên Pehlgam, hebûna hejmareke zêde ya hespan e ku hevwelatî bo îş û karên xwe yên rojane û çûn û hatinê bikar tînin, herwiha tûrîst li vî bajarî bi hespan diçin û tên.

Ji bilî xweşikiya bajêr, çend baxên pir xweşik tê de hatine çêkirin ku ewqasî ciwan in, xelkê navçeyê û xwendekar bo derbaskirina demeke xweş, li gel geştiyaran serdana wan dikin û li wan dimînin. Beta Valley ciwantirîn bax û seyrangeha vî bajarokî ye û Keşmîrî zêdetir ji tûrîstên biyanî serdana wê dikin.

### Zivistanê karê destan dikin

Weke ku xelkê navçeyê behs dikirin, dijwariya sermaya Pehlgam wisa kiriye ku zivistanan bi giştî li mal bimînin û bi karên dest ve mijûl bibin, weke çinîn û nexişandina cawên cihê bi zanebûneke hûr û stîlekê ku mohr û çanda Keşmîriyan li ser wan diyar be.

Gava serma û seqema zivistanê çû, ew jî hêdî hêdî ji malên xwe derdikevin...

Li vir hemû kes kar dike, cihê mirovên zexel û tembel li Keşmîrê tune. Kedkarên Pehlgam, mêr û jin, ji bilî karê malê yê rojane li derve jî kar dikin, lê hinek ji malbatên Srînagar, weke rêzgirtina keç û jinan, baş nedidîtin ku ew karê derve bikin, lewma di malên xwe de kar dikirin.

Mirovên Pehilgam ji bo peydakirina pereyan ji gelek tiştan sûd werdigirin. Ji wan jî bi kirê dana hespan û cilûbergên çanda wê navçeyê û ji bo geştyar wêneyên xwe pêve bigrin. Heya hinek şivanan berxikên biçûk û ciwan dianîn nêzî seyrangehan, ji bo zarok û geştyar bigrin himbêza xwe, wêneyê xwe li gel bigrin û piştre bexşîşê bidin şivanan.

Sunmarg yek ji navçeyên din ên wê biheştê ye û jêr e dibêjin; Keşmîr. Agirê siyaset û reqabeta dewletan jî mirovên wê navçeyê westandine.

Li Sunmargê geştyar li hespan siwar dibin, nêzî saetekê dimeşin û li serê çiyê, lîstikan bi befrê dikin. Zivistanan ev der cihê lîstok, xişikandina ser befrê û gelek pêşbirkên din tên kirin. Xwezaya Sunmarg ewqas giran û sare, heya di çileya havînê de bi temamî befra wê navçeyê na hele.

Li ser giraniya wê navçeyê re, lê hêjmarek zêde ya hêzên ewlekariyê bi awayek berdewam li wê navçeya giran de perwerdeya leşkerî dibînin.

Keşmîr jî wek Kurdistanê bûye qurbanê milmilanêya siyasî ya deshilatdarên cîran. Beşek vê xakê ku sedî 35 pêktîne, piştî sala 1947ê dema Pakîstan ji Hindistanê cûda bû, ket bin destê Pakîstanê. Beşa din a sedî 63ê xaka Keşmîrê ket bin destê Hindistanê û herwiha nêzî sedî 2 jî ket bin destê Çînê. Heya niha salên 1947, 1965, 1971ê navbera Pakîstan û Hindistanê ku xwediyê çekên atomî ne, sê şerên mezin li ser vê xakê hatine kirin û hê jî ew pirsgirêk bi awayek hilawistî maye.



# Amadekariyên çêkirina Ensîklopediya Kurdistan tê kirin

▶Hikûmeta Herêma Kurdistanê piştgirî dide projeya Ensîklopediya Kurdistanê.

▶Ensîklopedî ne tenê ji bo Herêma Kurdistanê ye, wê hemû Kurdên cîhanê jê sûd bigirin.

**Barzan Mihemed** Hewlêr

Akademiya Kurdî ji bo çêkirina Ensîklopediya Kurdistanê amadekariyan dike. Wê berhevkirina ensîklopediyê 5 sal û çapkirina wê jî salekê dom bike.

Ji bo amadekariyên despêkê yên projeya çêkirina Ensîklopediya Kurdistan, Akademiya Kurdî despêka meha borî komek xebatê pêkanî. Ev kom wê di nava sê mehan de li navxwe û derveyî Kurdistanê ji bo alîkariyê pisporên Kurd agahdar bike.

Endameke wê komê ji Rûdawê re diyar kir ku di salên 90'î de ji bo çêkirina ensîklopediya Kurdî amadekarî hebûn, lê ji ber nebûna alîkariya darayî û sistiya înternetê li Herêma Kurdistanê û li Ewropayê jî ne bi awayek belav bû, ew proje serneket û got, "Lê îsal ew proje ji aliyê Endamê Akademiya Kurdî Dr. Cebar Qadir ve hat nû kirin û wê Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî piştgiriya darayî bide."



Wêne: Rûdaw

**Endamê Akademiya Kurdî Dr. Cebar Qadir projeya Ensîklopediya Kurdistanê nû kir**

Niha ew kom ji bo bidestxistina zanyariyan, bi rêkirina nameyan a ji bo pispor û akademîsyenên kurd û kurdnasên biyanî ve mijûl e. Endameke koma xebatê got, "Em ê sîstemeke bêjingkirinê deynîn ji bo ku em bizanin mijarên ku dikevin destê me çiqasî zanistî ne. Herwiha em ê di pêşgotina ensîklopediyê de kurtiyek ji jiyan û mijarên herî girîng ên nivîskarên ku tevlî bûyîn binivîsin."

Endamê Koma Amadekar a Ensîklopediya Kurdistanê bal kişand ser wê yekê ku wê hemû karên wê projeyê di nava Akademiya Kurdî de bên kirin û wiha pêdeçû: "Wê ne tenê taybet ji bo Herêma Kurdistanê be, wê Kurdên Bakûr, Rojhilat û Rojavayê Kurdistan, Kurdên Elegez, Xuristan, Rûsya, Bulgarîstan, Ermenîstan û Ewropa jî bigre nava xwe. Ensîklopedî jî wê her çend sal carekê bê nû kirin, wê zanyariyên nû lê bên zêde kirin û bê çapkirin."

Endamê koma amadekar bal kişand ser wê yekê ku ji bo sûd wergirtinê wan ensîklopediyên bi dehan welatên Ewropa anîne, ji bo bikarin ensîklopediyek bi rêkûpêk çêkin. Tevî ku budceya wê projeyê nehatiye eşkere kirin, lê bi baweriya wî endamî pereyê ji bo wê projeyê hatî veqetandin pereyek kêm e "Lewra ji niha ve em fikra sponsorê dikin."



## Hekîm Sefkan

### Şoreşa çandî



Di dema ku çand û stranên me qedexe bûn, ji vê rojê bi gelekî orjînaltir bûn. Ev di gelek tiştan de wiha dibe, dema ku qedexe be, hîn zindîtir, aktîvtir e. Ev hinekî bi psîkolojiya mirovan ve girêdayî ye, tirsa wendakirinê, rihê berpirsiyarî û parastinê li cem mirovan peyda dikin.

Em vegerin salên berê, di stran û melodiyên me de çiqasî orjînalî hebû, ji hêla teknîkî ve pir zeyif, lê di hêla peyv û melodiyê de xemla wê her dever dixemiland. Em îro stranên berî 70 salan distrên. Bi nimûneyeke berçav ji civata me dixwazim hîn bêtir ronî bikim. Kurdên Anatoliya Navîn ku ew li nava Tirkan bi cih kirin, heya vê rojê ziman û çanda xwe diparêzin. Ji bo ku wenda nebin bi her awayî li ber xwe dan. Ji ber ku tirs hebû, tirsa helandinê hebû. Lê bajarên Kurdistanê ku xwe rehet didîtin, bêje têk çûn. Li Dêrsim, Riha, Amed û gelek bajarên din kurdî hatibû ji bîr kirin. Ev rewş wiha di çand û strana me de heye. Piştî ku TVyên kurdî derketin, piştî ku têkiliya Kurdan bi derve ve zêde bûn û piştî ku her kes dikare bibe stranbêj, strana kurdî ber bi nemanê ve diçe. Gelo kî dikare îdia bike ku em ji deh albumên derketî, deh stranan xweş dibînin, yan jî paqij dibînin? Tu li kîjan stranê guhdar dikî weke yeka din e; rû, deng tên guhertin lê "wekkirin" wek xwe dimîne. Şelû, bê tam, ya herî kambax ku gelek caran heya stran tê gotin, deh stranên din tîne bîra mirov.

Pirbûna derfetan, tevî ku gelek tiştê baş bi xwe re tîne jî, ji Kurdan û gelên wekî wan re, tiştên xerab jî tîne. Teknolojiyê wiha kiriye ku êdî hemû tişt ketiye bin deh tiliyên mirovan, lê piraniya Kurdan ji 3 tiliyan pê ve bi kar nayin, yani klavyera PC. Êdî li ser vê mirovek kare her tiştî bike, melodiyê çêke, strana xwe tomar bike, klîpa xwe bikşîne û bîne dîsa bi rêya wê aleta acêb montaj bike, rengan lê zêde bike û ji TV'yên kurdî re - ku birçiyê stranan û têrtirîn kanalên cihanê di hêla valahiyê de ne - bişîne. Kanalê TV bêyi ku kontrol bikin, bêyî ku kalîteya wan di ber çavan re derbas bikin - ji xwe kesî ku kalîteya hunera stranê fêm bike jî tune ye, ku heba wê neweşandana - diweşînin û carnan rojê çend caran. Rewş ev be, rojê stranbêjek li me zêde dibe, stranbêj zêde dibin lê stran kêm dibin, kêm dibin ji ber ku tama stranê nahêlin, ji ber ku tiştê ku pêşkêş dikin xav, teqlîd û dagirtina valahiya egoya kesayetiyê ye.

Rewş ev be, kî berpirsiyar e, kî dikare rê li ber vê kambaxiyê bigre? Kî dikare şoreşeke çandî bike û hefsarê vê rêwîtiya tahlukê ragire? Tevî ku min pir caran li ser vê mijarê nîvîsiye, di gelek platforman de hatiye gotubêjkirin, dîsa jî her ku ez li TV'yên kurdî temaşe dikim, dîsa ramana şoreşeke çandî di serê min re derbas dibe.

Ne "stranbêj" metirsînên wî yên şelûkirina stranê hene, ne derdê xwediyên kanalan yên wiha hene. Ji xwe piştî ku kanalên wek TRT vebûn, êdî gelek tişt bi zanebûn jî dibin. Di nava derfetên pir de, dest û lingên stranê girêdayî ne. Şoreşek pêwîst e.

## Xalid Ezîzî, Sekreterê Partiya Demokrata Kurdistanê:

# Çalakiyên PJAKê bahane didin Îranê

Ezîzî derbarê têkiliyên li gel Amerîka dibêje li ser avakirina Îranê gotinên Kurdan hene û Kurd di sînorê karîna xwe de fakterek in. Ezîzî dibêje Îran welatek pir netewe ye û dom dike: "Pêwîst e bingehê Îrana dahatû li ser pir neteweyî bê dariştin." Derbarê hevdîtina bi PKKê re Ezîzî dibêje, bo bizava sivîl li Îran û Tirkiyê xurt bibe wê bi PKKê re têkiliyan bidomînin.


Wêne: Rûdaw

Xalid Ezîzî

**Rûdaw: Li gor texmînan pêwîst bû li Îranê şoreş û raperîn ketiba pêşiya welatên din, lê niha Îran dibêje, "ya li welatên Ered rûdidin berdewama şoreşa Îranê ye." Hûn jî di wê baweriyê de ne?**

**Xalid Ezîzî:** Şoreşa ku li cîhana Ereban dest pê kirî, bi ti awayî ne berdewama şoreşa Îran û peyama Îmam Xumeynî ye. Em di serdemekê wisa de ne ku welatên diktator kêm dibin. Welatên ku bi rêbaza rejîma Îran li gel hevwelatiyên xwe tevdigerin, roj bi roj alîgirên wan kêm dibin û dijminên wan zêde dibin. Bi baweriya min dereng an zû, pêwîst e rejîma Komara Îslamî biçe.

**Wê kengê dora Îranê bê?**

Bi baweriya min niha dora Îranê ye û ketiye nava rêzê. Gelê Îranê di xwepêşandanên berî du salan de ew yek ragihand ku pêwîst e ev rejîm biçe, lê Komara Îslamî berhemê wê yekê ye çawa krîzên navxwe bi derxistina krîzên derveyî sinoran çareser bike. Hewl dide bi awayek berdewam li navçeyê pirsgirêk û aloziyan derxe û pirsgirêkên navxweyî bibe derveyî sinorên xwe.

**Wê ev rewş çiqas berdewam bike?**

Pir zehmet e em li gor demê diyar bikin, lê ez bi xwe di wê baweriyê de me temenê Komara Îsamî pir kurt bûye.

**Di demên borî de hûn li gel nûnerên Tevgera Kesk rûniştin, armanca wan rûniştinan çi bû?**

Rêberên Tevgera Kesk di nava welat de ne, li wê derê çalakiyan dikin û rasterast dirûşmeyên li dijî Komara Îslamî di hinek guhertin û reforman de dibînin. Me hewl daye ku bi awayekê mamele têkilî li gel wê tevgerê deynin. Lê dîtin û xwendina wan ne wekî dîtina Partiya Demokrata Kurdistanê ye. Tevgera Kesk dikare bibe tevgerek seranserî ya pir alî û hemû aliyên Îranê wekî, emîrê rastiyê bipejirînin. Ji ber ku Îran welatek pir netewe ye. Em niha rêya çareseriya pirsgirêkên Îranê, di federalîzmê de dibînin. Me hewl daye ku ji Tevgera Kesk re bêjin, pêwîst e peywendiyên we li gel bingehên demokrasî, azadiya karên hizbî, mafê hevwelatîbûn û mafê mirov ê li Îranê eşkere û zelal be.

**Ev demek dirêj e we şerê çekdarî rawestandiye. Gelo dibe ku pêwîst bibe hûn dîsa dest bi şerê çekdarî bikin?**

Dibe ku nava Îranê de xebat û tevgerek civakî wê hikûmetê neçarî poşmantiyê bike û dibe ku bimîne jî. Dibe ku berdewamiya xebat û tevgerê ber bi aliyekê ve pêşbikeve û di nava Îranê de darbeyek bê kirin. Me di nava xwe de behsa van hemû tiştan kiriye û me hewl daye ji bo her senaryoyekê amadekariyên me yên pêwîst hebin. Lê ev dîtin û lêkolînên me û bi tenê jî nayê kirin, lewra ya baş ew e em li gel hemû partiyên din bi hev re bikin.

**Niha hûn ji bo amadekariyên çekdarî ti alîkariyekê distînin?**

Na, em bi ti awayî alîkarî nastînin.

**Dema hûn li gel amerîkiyan civiyan, di nava we de çi axaftin çêbû?**

Em çi li Washington û çi jî li vê derê li gel amerîkiyan rûniştin, ti axaftinek bi wateya Amerîka dixwaze senaryoyek leşkerî li dijî Komara Îslamî deyne û di wê senaryoyê de aliyê Kurd beşek ji tevger û karkirina li dijî rejîma Îranê be, bi ti awayî behsa tiştek wiha nehatiye kirin. Di wan hemû civînan de zêdetir behsa wê yekê hatiye kirin ku li Îranê çawa alîkariya xebat û tevgera sivîl bê kirin. Çawa alîkarî bê dayîn, zext li deshilatên Îranê bê kirin û rêzdariyê li mafê mirov bigre û xebat ji bo mafê jin û azadiya sivîlan bê bihêztir kirin.

**Konsûlê Amerîka serdana we kir, gelo têkiliyên we li gel Amerîka di wê astê de ne serdana we bikin?**

Ji zû de li Washington peywendiyên me li gel Amerîkiyan hebûn û li vê derê jî ew peywendî heye. Amerîka ji bo her rêyek çareseriyê ya taybet ji bo paşeroja Îranê, nikare Kurdan paşguh bixe. Me herdem ev yek gotiye, pêwîst e Îrana dahatû li ser pir rengî û pir neteweyî mikûr bê û bingehê wê li ser vê yekê bê dariştin. Ji me re pir girîng e ku Komara Îslamî nemîne, lê ji me re du qat girîngtir e ku em bizanin wê Îran çawa ava bibe. Me bi eşkere ev yek ji amerîka û ewropiyan re gotiye. Lewra li ser avakirina Îranê gotinên Kurdan hene û Kurd di sinorê karîna xwe de fakterek in. Di civîna herî dawî ya konsûlê Amerîka serdana me kirî de, zêdetir behsa vê yekê hat kirin.

**Ji bo aliyên opozîsyona Îranê bicivin û bernameyekê deynin, çi hewldan hene?**

Opozîsyona Îranê pir belav e û herwiha pir zêde ne. Mixabin kêm hevûdin dipejirînin. Herwiha ev yek ji wan fakteran e ku alîkarî daye Komara Îslamî, li beramberî xwe û di asta xwe de bedîlekê nebîne.

**Niha partiya we berbi kongrê ve diçe, behsa wê yekê tê kirin ku hûn xwe berbijar nekin û kesên din bibin sekreterê partiya we?**

Heya niha min biryara xwe nedaye.

**Li Londonê civînek hat kirin, çend partiyên Erebî û Îranî û du partiyên Kurdî jî tê de bûn. Ereban digotin eger ev rêjîm hilweşe em ê Îranê parçe bikin ji ber ji tevahiya 20 partiyên Ehwazî partiyek tenê daxwaza federalîzmê dike û 19ên din daxwaza serxwebûna devera Ehwazê dikin, piştgiriya Rojhilatê Kurdistanê jî bo serxwebûnê dikin?**

Îran li himber hejmareke senaryoyên tarî ye. Gelo Îran wisa dimîne yan parçe parçe dibe? Bi dirêjahiya dîrokê, Pars û Azeriyan Îran ava kirine. Bi baweriya min eger Îran hilweşe û parçe bibe divê ji wan destpê bike. Rol û bandora van herdu neteweyan li ser paşeroja Îranê mezin e. Dibe ku Ereb an Beluç nexwazin di çarçoveya Îranê de bimînin, yan bi ser de di paşeroja Îranê de Kurd jî piştî xwendina rewşê bêjin Îran êdî berjewendiya me naparêze. Niha li ser paşerojê hukim nadim, divê em bizanin wê demê çi lê tê, lê Îran wisa bi hêsanî bi Beluç an Ereban parçe nabe, lê ev netew dikarin rewşekê dirust bikin ku wisa hest bikin li hundirê Îranê ewlehiya wan nîne. Em weke PDK wisa di berjewendiya Kurdên Îranê de dibînin ku di wan hemû rewşan de roleke çalak bilîzin da ku ew netew di pêngava yekemîn de li Îranê bi awayekî demokratîk bi hevre vehewin.

### Pêwîst e rejîma Komara Îslamî biçe

**Berî demekê Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê PJAK çend çalakiyên çekdarî kirin, hûn çawa berê xwe didin van çalakiyan?**

Di heyama niha de bi baweriya me ev çalakiyên bi vî rengî sûdê nagihînin doza me, çend belge jî li ser vê yekê hene. Belgeya yekemîn ew e di van çalakiyên ku çend kes di wan de tên kuştin, divê mirov agahdar be bandora wan li ser civakê çî ye? Bi baweriya me çalakiyên bi vî rengî behaneyeke zêdetir didin Komara Îslamî ya Îranê, ji berê bêtir ewlehiyê li Kurdistanê xurt bike û hêzeke mezintir lê bicih bike, di encamê de sînoran bêtir bê ewlehî bike ku hem zerereke zêde digihe bazirganiya gelek kesan ku bi qaçaxî neçar in jiyana xwe birêve bibin, û hem jî zererê dide bazirganên yasayî li wê deverê.

**Berî demekê hûn bi PKKê re rûniştin, we ev tişt ji wan re got?**

Me di rûniştina xwe de bi PKKê re tekezî li ser hinek tiştan kir. Yekem: herdu alî divê hewl bidin li gor şiyana xwe nêrîn, siyaset, kar û kiryarên xwe, Hikûmeta Herêma Kurdistanê qasî pêwendî bi me heye biparêzin. Duyem: Xebatê bikin ku li Îran û Tirkiyê alîkariyê bidin bicihbûna mentalîteya xebat û bizava sivîl û çalakiyên demokratîk; herwiha tiştê ku pêwendiya wê bi Tirkiyê ve hebû me teşwîqî PKKê kir, ku ew veguherînên li Tirkiyê hatine holê, piştgirî bikin û astengiyan li berê dernexin. Heman xwendina me bo Îranê jî hebû, lê behsa PJAK di navbera me û PKKê de bi ti awayî nehat kirin, ji ber rûniştina me bi PKKê re bû, lê me ew teşwîq kirin ku zêde alîkariya bizav û tevgerên behskirî nekin.

**Rûniştina we li gel Murat Karayilan bû. Karayilan weke serokê KCKê ye ku PJAK jî tê de ye û dikeve bin serokayetiya Karayilan, ji ber çi we behsa PJAKê nekir?**

Mijara me weke Partiya Demokrata Kurdistanê, pêwendiyên Partiya Demokrata Kurdistanê û PKKê bûn, em PKKê weke rêxistineke bakurê Kurdistanê yan Kurdistana Tirkiyê pênase dikin.

**Hûn PJAKê weke beşekî PKKê nabînin?**

Em PJAKê weke beşekî PKKê dibînin û bi baweriya me PJAK di nav xelkê Rojhilatê Kurdistanê de ava nebûye weke Partiya Demokrata Kurdistanê û partiyên din, lê dîsa jî meseleya PJAK di nav rûniştina me li gel Karayilan de nebû cihê behskirinê.

# Hê zarok in lê diya zarokan in!

**Lêkolîn derbarê jinên Cizîrê: Ji sedî *31,8* di 15 salî û beriya 15 saliya xwe de zewicî ne. Ji sedî *38,8* di navbera temenê 16-20 salî de zewicî ne.**



**Bawer Çem** Amed

Li gor rapirsînek ku li Cizîrê hate kirin, ji sedî 21,8ê jinan dema zarok anîne, bebeka wan miriye û ji sedî 6,8 jî zarokên wan ji ber wan çûne. Her wiha ji her 100 jinan 31 jin beriya 15 saliya xwe zewicî ne.

Navenda Şêwirmendiya Jinan a Sitîya Zîn ku navenda wê li Cizîrê ye, li ser jinên navçeyê li 10 taxan rapirsîn (anket) dan çêkirin. Di rapirsînê de ji 400 jinan pirs hate pirsîn. Li gor agahiyên ku Berpisyara navendê Harîka Peker da Rûdawê, di rapirsînê de zêdetir li ser rewşa civakî, siyasî, kulturî û aborî ya jinan pirs hatin kirin. Peker diyar kir ku ji temenên jinên ku tevlî rapirsînê bûne ji sedî 44,4 di navbera 20-29 de, ji sedî 47,8 di navbera 30-49 de, ji sedî 7,8 di ser 50 salî de bûne.

### Ji sedî 60 xwendin nivîsandinê nizanin

Berpirsyara navendê Peker eşkere kir ku di encama rapirsînê de derketiye holê ku li navçeyê rêjeya jinên ku xwendin û nivîsandinê nizanin ji sedî 60,5 in. Ji sedî 13,3 xwendin û nivîsandinê dizanin û dibistana seretayî qedandine. Ji sedî 6,0 dibistana navîn, ji sedî 4,5 lîse û ji sedî 0,8 zanîngeh qedandine. Ji sedî 1,8 jî dibistana xaricî dixwînin. Li Cizîrê ji sedî 25,3 ji ber ku malbatê nehiştiye, ji sedî 9,3 ji ber rewşa xirab a aborî, ji sedî 8,3 ji ber ku bixwe nexwestiye, ji sedî 7,5 ji ber orf û adetan, ji sedî 26,3 jî ji ber ku li cih û warê wan dibistan tune bûne, neçûna dibistanê. Peker da zanîn ku jinên ku bi wan re rapirsîn hatiye kirin ji sedî 19,8 ezeb, ji sedî 73,8 zewcandî, ji sedî 4,1 destgirtî bûne. Ji van jinan ji sedî 2.0 jî bî ne. Ji van jinan ji sedî 84,3 di malê de bê pere dixebitin, ji sedî 1,3 karmendên dewletê û ji sedî 0,5 jî dikandar in. Ji sedî 4,5 jî jinan eşkere kir ku betal in û ji sedî 5,3 jî xwendekar in.

### Ji sedî 9 ti dahatiyeke wan tune ye

Di rapirsînê de meaş û dahatuya hevserên jinan jî hate pirsîn. Li gor rapirsînê ji sedî 8,8 ti dahatûyeke wan tune ye, ji sedî 39,3 meaşê hevserê wan di binê 630 TL'î de ne, ji sedî 30,5 jî 630 TL dahatûya wan heye. Herwiha ji sedî 17,0 dahatûya hevserê wan di navbera 701-800 TL'î de, ji sedî 2,8 di navbera 801-900 TL'î de û ji sedî 1,5 jî di ser 901 TL de ye.

### Zimanê serdest kurdî ye

Di rapirsînê de li ser zimanê ku rojane diaxivîn û pê têkilî datînin jî hate pirsîn. Ji van jinan ji sedî 66,0 eşkere kirin ku bi malbatê re tenê bi kurdî diaxivin. Ji van jî sedî 31,8 bi malbatê re bi kurdî-tirkî diaxivin. Ji jinan pirsa "Hûn zimanê xwe yê dayikê zêdetir li ku bi kar tînin?" jî hate pirsîn. Ji sedî 50 jinan eşkere kir ku ew zimanê dayika xwe li her derê bi kar tînin. Berpirsyara navendê Harîka Peker da zanîn ku ji ber rêjeyeke bilind bi kurdî diaxivin, divê li navçeyê di sazî û dezgehên dewletê de bi kurdî jî xizmet bê dayîn.

### Mehra mele hê jî zêde ye

Di rapirsînê de ji jinan pirsa "Te mehra mele yan a dewletê (fermî) kiriye?" hate kirin. Ji van jinan ji sedî 7,8 eşkere kirin ku tenê mehra wan a mele heye. Kesên ku zewicandî ne ji sedî 48,8 bi navbeynkariya malbatê zewicî ne. Ji sedî 18,3 bi rêbaza berdêlê zewicî ne û ji sedî 1,3 jî bi hezkiriyên xwe re reviyane. Di rapirsînê de tişteke balkêş ku derkete holê jî ev e; jinên Cizîrî tenê ji sedî 11,5 bi dilê xwe, bi hevserê xwe re zewicî ne.

### Ji sedî 21 bebeka xwe ji dest dane

Di rapirsîna jinan de encamek pir balkêş jî derkete holê. Li gor rapirsînê rêjeya jinên ku dema zarok anîne û zaroka (pitik / bebek) wan miriye ji sedî 21,8 e. Ji sedî 6,8 jî zarokên wan ji ber wan çûye. Herwiha di rapirsînê de derkete holê ku ji sedî 12,8 rastê tundiyê hatine. Peker destnîşan kir ku digel li navçeyê tundiya li ser jinan zêde ye jî, piraniya jinên tevli rapirsînê bûne, behsa tundiya di nava malbatê de nekirine û zêdetir tundiya dewletê anîne zimên.

### Hêj di zaroktiyê de dizewicin

Agahiyeke din a balkêş ku di rapirsînê de li ber çavê mirov dikeve jî rêjeya temenê zewacê ye. Li gor lêkolînê de ji sedî 31,8 di 15 salî û beriya 15 saliya xwe de zewicî ne. Ji sedî 38,8 di navbera temenê 16-20 salî de zewicî ne û ji sedî 7,8 jî di navbera 21-25 saliya xwe de zewicî ne. Her wiha ji sedî 33,5 bi xizmên xwe re zewac çêkirine. Ji van jinan ji sedî 37,3 eşkere kirin ku bi 8-11 kesî re di malekê de, ji sedî 10,5 jî eşkere kirin ku di malekê de di ser 16 neferî re dimînin. Her wiha ji sedî 18,0 eşkere kirin ku hejmara zarokên wan 1-3 heb, ji sedî 3,5 jî gotin ku 4-7 heb, ji sedî 18,3 jî eşkere kirin ku di navbera 8-11 heb zarokên wan hene. Ji sedî 2 jî diyar kirin ku hejmara zarokên wan ji 12 hebî zêdetir e.

### Ti tiştekî wan tune ye

Yek ji agahiya balkêş jî eşya, mal û milkê li ser navê jinan e. Li gor rapirsînê ji 400 jinan tenê 3 jin li ser navê wan mal û milk an jî pere heye. Di rapirsînê de jinekê jî eşkere kir ku tenê fatoreya ceyranê li ser navê wê ye. Li ser navê jinên din ti mal û milk û pere tune ye.

---

Jineke 80 salî di hemameke du metroyî de dijî

# Ayîşe ji bo avdest û xweşûştinê diçe mala cîranên xwe



Wêne: Rûdaw

**Ferman Çomanî – Omer Çawşîn** Ranya

Ev 20 sal in ku Ayîşe Nebî ya 80 salî bi tenê di hemameke kevin a leşkerî de dijî. Rûberê wê hemamê 2 metro ne û dikeve taxeke hejaran li Ranya. Ev pîrejin bi şev û roj çavê wê li cîranên wê ne ku alîkariya wê bikin, ew dibêje: "Eger xelk nede min tiştekî min tune bixum."

Keç û kurên Ayîşe hene, lê ew nikarin alîkariya wê bikin û bi zorê mal û zarokên xwe xwedî dikin. Vê jinê behsa jiyana xwe ji Rûdawê re kir û got: "Pêşî em raguhastibûn bo Cedîde li Hewlêrê, sala 1991ê em hatin, ez di cîh de hatim vê hemamê ku hemama leşkeran bû û heya îro li vir im."

Ayîşe jiyaneke pir nexweş di hemamê de derbas dike: "Hemam bi cildoyan tije ye, ji ber dengê wan nikarim razêm, herwiha mar jî li vir hene û rojekê raketî bûm gava rabûm marek di bin serê min de bû û xwe li hev alandibû, çend caran jî dûbişkan bi min ve daye."

### Desteya nivînê, perwaneya kevin û agirdaneke kevnar

Ev hemam ku bûye landika Ayîşe, nêzîka pêşangeheke firotina otomobîlan nêzîk e, û xwediyê pêşangehê elektrîk daye wê. Tiştên di nav hemama Ayîşe de pir sade ne û xelkê bi xêra xwe danê. Hemû tiştên wê ji desteyekî nivînan, perwaneyeke kevin û agirdaneke kevnare pêk tên.

Ayîşe dibêje eger ne ji cîranên wê bûna wê ji birçîna bimira: "Cîranên min pir baş in, xwarinê ji min re tînin, gava nexweş dikevim hevkariya min dikin û zarokên min jî car caran serdana min dikin. Bo xweşûştin û karê avdestê diçim mala cîranên xwe."

Derbarê zarokên xwe jî, navbirî dibêje: "Keça min ligel min baştir e, kurê min ji ber jina xwe nikare min xwedî bike û ez bi xwe jî naxwazim pirsgirêkan ji wan re derxim, lewma bi tenê dijîm."

Cîranên Ayîşe behsa qencî û başiya vê pîrejinê dikin, tevî ku reftara gelek kesan di extiyariyê de ligel derdorê zehmet û nexweş dibe. Aras Hemedemîn (28) dibêje: "Ayîşe bêkes e û pir bi dijwarî dijî û car caran diçe cem zarokên xwe. Em hemû xwarinê didinê, çimkî tiştekî wê tune, di wê hemamê de zivistanan li agirdaneke kevin û havînan jî bi perwaneyeke xirab derbas dike."

Sebrî Resul (45) li ser Ayîşe dibêje: "Jineke pir hejar e, nikare tiştekî bike, eger derfet hebûya me jê re odeyek ava dikir. Pir pîr bûye û du caran bi ava germ şewitî û me ew bir cem doktor."

Her çiqasî Ayîşe jiyaneke dijwar dijî, lê dîsa jî pir razî ye bi vê qismeta ku bûye nesîbê wê. Jiyana vê pîrejinê heya niha di nexweşî û nebûniyê de derbas bûye: "Gava diya min mir ez zarok bûm, timî di jiyaneke nexweş de jiyam, lê qet bêzar nebûme û spasiya Xwedayê xwe dikim."

Piştî yasaya nû: Yê ku piştevaniya sinetkirina keçan bike û yê wan sinet bike her du wê bên cezakirin

# Li dijî tundûtîjiya malbatî wê dadgeha taybet bê avakirin

▶Sala 2010ê li Herêma Kurdistanê xetenekirina keçan ji %40 bû.

▶Li Kurdistanê di warê civakî de reformeke yasayî tê bicîhkirin.

▶Projeya ku rê li pêşiya tûndiya malê digre ji aliyê hikûmetê ve hat pejirandin û bû yasa



**Barzan Mihemed** Hewlêr

Yasaya dijberiya tundûtîjiya malbatî piştî çar salên çaverêkirinê ji aliyê Parlamenê Kurdistane derket, parlamenterek di wê bawerê de bû ku ev yasa dike rê li himber tundûtîjiya malbatê bigre "li gor wê yasayê wê dadgeheke taybet bo tundûtîjiya malbatê bê avakirin."

Ev proje ji aliyê çalakvanên warê parastina mafên jinan, rêxistinên civaka sivîl û çend parlamenteran û bi razîbûna Hikûmeta Herêma Kurdistanê hatiye amadekirin, roja 22`ê Hezîrana 2011`an bi dengên bêtiriya endaman bû yasa û li gor wê yasayê êdî li Herêma Kurdistanê tundûtîjiya malbatî, tevî xetenekirina keçan jî, tawan e.

Cîgira Serokê Lîjneya Parastina Mafên Jinan li Parlamenê Kurdistanê, Haje Silêman bo (Rûdaw) got ku berê hin kesan wisa dizanî ku encamdana tundûtîjiya malbatî ji mafên wan e, ji ber ku yasayek tunebû ku rê li wê yekê bigire "lê niha li gor yasayê tundûtîjiya dijî her endamekî malbatê, weke tawaneke civakî tê zanîn û encamderê wê jî wê bê ceza kirin."

**Ev kiryar bûne tawan: Zewaca bi zorê, lêxistina zarokan, rêgirtina xwendinê, xetenekirina keçan, dana jinê li şûna xwînê, eger malbat bibe sedemê xwekuştina ferdekî.**

### Tawanên di yasayê de

Li gor madeya 2 ya wê yasayê her yek ji van kiryaran weke tawan tê naskirin: zewicandina bi zorê, rêgirtina li xwandinê, lêxistina zarokan bi mebesta hoşdarkirinê, xeberdan, xetenekirin, berdana bi zor, dana jinê li şûna xwînê, xwekuştin û xwe şewitandin eger ku bi sedema malbatê be, herwiha sivkatiya bi endamên malbatê.

Sekrtera Yekîtiya Afretên Kurdistanê, Viyan Silêman pesna yasayê da û got "eger ev yasa bi başî aktîv bibe û kar pê bê kirin wê heta raddeyeke zêde bikaribe dawiyê li tundûtîjiya malbatî bîne, lê ev bi rojek û du rojan nayê kirin. Herwiha divê xelk bên hişyar kirin ser vê yasayê û zanyariyên derbarê vê yasayê jê re bên dayîn."

Sizayê her yekê ji wan tundûtîjiyên ku di maddeya 2 ya yasayê de hatine diyarkirin, dune cizakirina bi pare û zîndankirin. Cezakirina bi pare ji yek milyon Dînarî kêmtir nabe û ji 5 milyon Dînarî jê zêdetir nabe. Zindanîkirin jî ji 6 mehan kêmtir nabe û ji 3 salan zêdetir nabe. Herwiha her kesê ku tundûtîjî encam da û dadgeh nekarî bi vê yasayê wî siza bide, wê li gor Yasaya Sizadayîna Îraqî û Yasaya Barê Kesîtî bê sizadayîn.

Di maddeya çaremîn a vê yasayê de hatiye ku wê dadgeheke taybet bo tundûtîjiya malbatî bê pêkanîn û wê pirsgirêk li wir bên yekalî kirin. Parlamenter Haje Silêman got "hin caran tundûtîjî ne zêde mezin in, loma me komîteyek bo wê yasayê pêkaniye da ku navbera endamên malbatê de aşt bike, berî ku pirsgirêk biçe dadgehê."

Di gera duyemîn a Parlamenê Kurdistanê de mijara xetenekirin (sinetkirin) a jinan bi projeyeke yasayî ya serbixwe çû parlamenê, lê piştî ku xwandina yekemîn je re hat kirin, hat retkirin bi hênceta ku ew ne pirsgirêkeke gelek mezine. Niha ew jî bûye maddeyek û di nava Yasaya Nehêştina Tundûtîjiya Malbatî de hatize bicihkirin.

Li gor amara Rêxistina Çavdêriya Mafên Mirovan di sala 2010`an de xetenekirina jinan ji sedî 40 bû, lê li gor amarên Wezareta Tendirustî ji sedi 41 bû. Haje Silêman di wê bawerê de ye "ev rêje gelekî mezin e."

Haje Silêman got jî "li gor yasaya nû kesê ku malbatekê dehif bide bo xetenekirina zarokên wan û kesê ku wî karî encam dide jî wê bên sizadayîn. Hin kesên ku di warê tendirustî de kar dikin û karê xetenekirinê jî pêktînin, wê demê ew karmendê tendirustiyê wê meaşê wî/wê bo sê salan bê qutkirin û ji kar bê avêtin." Di yasayê de hatiye ku eger keçeke bin temenê 18 saliyê de be û xetenebikin, wê sizayê xetenekarî tundtir be.



## Cîbicîkirin merce



Piştî çar salên çaverêkirinê, Parlamenê Kurdistanê yasaya nehîştina tundûtîjiya nav malbatê pejirand. Di wê yasayê de ji bo hemû wan kesên ku di nav malê de tundûtîjiyê dimeşînin, keçên xwe sinet dikin, azara ceste û derûna jin û zarokan didin, siza hatine diyar kirin.

Tevî ku hin kes di wê baweriyê de ne ku ev yasa wê bibe sedema ji hevdu cudabûna malbatê li Kurdistanê, lê ev hizirkirina wan kesên ku dixwazin sîstema koletî û binpêkirina di nava malbatê de bidomînin, ew malbata ku jiyan tê de dozeh be hilweşandina wê ji domandinê baştir e.

Tevî ku pejirandina vê yasayê gelek dereng ma û di van çar salan de bi sedan kes rastî tundûtîjiyê hatin; ji ber ku malbat ciyekî metirsîdar e û bêtiriya tawanan di çarçoveya malbatê de û bi destê regezê nêr pêk tên.

Tundûtîjiya nava malbatê tiştekî nehezkirî ye û bandoreke xerab li malbat û tendirustiya kesan û mafên wan dike, mixabin rih û rîşalên vê yekê têkilî kultur û urfên nava civaka me bûne.

Yekem tawana nava malbatê ji aliyê Habîl ve pêk hat, dema birayê xwe Qabîl kuşt. Civaka mirovahiyê jî ji wê demê ve ew tawan domand. Îro ew tawan himberî jin û zarokan tê encam dayîn û tê pêkanîn bi rêya; xeberdan, kuştin, şewitandin, şerê derûnî, xetenekirin (sinetkirin), binpêkirina azadiyan û neçarkirina kesan ku hin karên ne bi dilê xwe bikin. Li gor raporeke mafên mirovan ji sedî 70 jinên di her post û dereceyê de carekê ji aliyê zilamên wan hatine lêxistin, ev jî ji bo keramet û azadiya mirovan xetereke mezin e. Tevî ku gelek jin wê rastiyê eşkere nakin û ji kesên nêzîkî xwe vedişêrin, herwiha ji tirsê û ji ber axaftinên xelkê serî li dadgehê jî nadin, ji ber ew di wê baweriyê de ne ku eger ew skalayekê qeyd bikin wê pirsgirêka wan aloztir bibe, loma bêtiriya wan jinan rastî nexweşiyên psîkolojîk tên û gelek caran jî dawiyê bi jiyana xwe tînin.

Civaka me jî mîna civaka mirovahiyê tije tawanên ji wê corê ye, lewma pêwîst bû ji bo lêkolîn û sînordanîna ji wan tawanan yasayek hebe. Digel vê yasayê hikûmet divê ji bo kêmkirina şer û nexweşiyên navbera jin û mêran, herwiha haydarkirina wan li ser mafên mirovan giringiyê bide warê aboriya malbatan. Loma niha li dadgehên Kurdistanê pêngava ji hemûyan girîngtir cîbicîkirin û dûvçûna karkirina bi vê yasayê ye, herwiha hişyarkirina dadwer, polîs û hemû aliyên peywendîdar, ji niha û şûn de nabe polîs ji jinê re bêje: tu ne yekemîn kes û ne dawî kes î ku lê tê xistin, li hemû jinan tê xistin, niha here mala xwe û bila pirsgirêk mezintir nebe û zilamê te te ber nede. Bi vê yekê jinan hînî azara cesteyî dikin. Loma divê ev yasa ji aliyê kesên mirovdost bên bikaranîn ku qîmeta mirovan bizane.



## Gaz ji bo pêşerojê pir girîng e

Chris Bowers

Ez ji wê yekê dest pê bikim û pirsekê bipirsim: Çima li Îraqê ji petrolê kêmtir behsa gazê tê kirin? Ez bi temamî nizanim ji ber çi ye. Di rastiya xwe de vejandina gaza yedek a Herêma Kurdistanê ya zêde ji bo asayîşa enerjiya li Kurdistan, Îraq, navçe û tevayî cîhanê pir girîng e. Ez şanazî bi wê yekê dikim ku dikarim bêjim şirketên Brîtanyayê, bi taybetî di warê enerjiyê de, di vê proseyê de rolekî girîng dileyîzin.

Ji ber gazê, Kurdistanê du caran qezenc kiriye. Ya yekemîn, ji ber gaza yedek û ya duyemîn jî berfirehbûna bazarê ji bo vê gazê. Pêwîstiya wê bazarê bi çaverêbûnê nîne. Li parêzgehên cîranên Herêma Kurdistanê daxwazek zêde û lez ji bo gazê heye, ji bo bi rêya wê gazê elektrîkê hilberînin. Bêguman pêwîst e despêkê gaza Îraqê bo wê yekê bê karanîn ku pêdiviyên xwe yên navxweyî dabîn bike. Herwiha karekî baş e dema mirov dibîne Herêma Kurdistanê alîkariyê dide parêzgehên din. Ev jî mînakek pir baş e, encamên berjewendiyên hevpar ên navbera Kurd û Ereban di berjewendiyên hemû aliyan de ye.

Dema daxwazên navxweyî hatin dabînkirin, bazara duyemîn a herî germ Tirkiye ye. Salane aboriya Tirkiyê ya pêşketî pêwîstî bi birek zêde ya enerjiya îzafî heye. Bi awayek xwezayî piraniya wê birê dikare ji gaza Îraq û li Kurdistanê bê dabînkirin. Bi rêya alîkariya enerjiyê û xurtkirina têkiliyên vê dawiyê yên navbera Tirkiye û Herêma Kurdistanê, aliyên bazirganî û aborî jî wateyek

**Rêkirina gaza Kurdistanê bo derve qezencek mezin dide Îraqê**

lêhatî bi xwe re tîne. Tirkiye ji bo Kurdistan û Ewropa bazarek mezin e, eger Tirkiye xwedî aboriyek zindî û pêşketîtir be, di berjewendiya hemû aliyan de ye.

Herwiha gaza Îraqê û Kurdistanê di berjewendiyê Ewropa jî de ye. Li Ewropa krîza gazê heye, tê texmînkirin ku di demên bê de pêdiviya daxwaz û veqetandina gazê berfirehtir bibe. Herwiha ji gelek cûrên din ên enerjiyê erzantir e. Veqetandina asayîşa enerjiyê ji bo Ewropayê ceribandinek stratejîk e, ev yek jî di wextekê de ye ku Ewropa bi vekirina xeta başûr, bi armanca zêdekirina aliyên beşdar, dixwaze xwe ji wê yekê xilas bike ku gaza xwe tenê ji aliyekî werbigre. Plandanîna ji bo xeta boriyên Nabûko, ku dibe gaza kurdî jî bigihêne Ewropayê, rêyek eşkere ye. Ev tişt hemû di dîtina bazar û pîşesaziyê de eşkere ne, em hêvî dikin ku siyaset jî pêşiya vî karî negire.

Piraniya van nûçeyên xweş girêdayî siyaseta Îraqê ne ku hewl bide di çarçoveya yasayî de pîşesaziya hîdrokarbonê bi cih bike û yasayekê bipejirîne. Reşnivîsa taybet girêdayî yasaya petrol-gaz (hîdrokarbon) û parvekirina qezencê ye. Wekî ku em li Brîtanya dibêjin, êdî dema çareserkirina wê hatiye. Bi dîtina me ferqa navbera partiyan ne ewqas berfireh e. Ji bo welatekî ku bi radeya Îraqê pişta xwe bi hîdrokarbonê girêdaye, ti wateyeke wê nîne ku lîstika siyasî bi yasayek bi vî awayî girîng bê kirin. Bê guman pêwîst e yasayek lêhatî be.

Pir zor e mirov bizane çi tiştî ew reşnivîs rawestandiye û paşvexistina wê jî di berjewendiyên kê de ye? Bê guman ne di berjewendiya gelê Îraqê de ye jî.

Tişta ku pêwîstiya wê bi balkêşanê nîne, ew e ku rêkirina gaza Kurdistanê ya bo derve dibe sedemê bidestxistina qezencek zêde û bi milyonan dolar ji bo Îraqê. Em li Brîtanya, bi mîsogerî, ji bo vê yekê bê guman em ê bikevin nava hewldanan.



## Em çawa alîkariya parlamenterên Kurd ên li Tirkiyê bikin?

Ebdurehman Sedîq*

Sarkozî dema tenê pîrozî li Erdogan kir bêyî behskirina ti mijarên derbarê Yekîtiya Ewropa, wisa dixuyî ku hêşta baweriya gelek welatên Ewropa bi endambûna Tirkiyê di nava Yekîtiya Ewropa de nehatiye. Pirsgirêkên welatên Ewropa û bi taybetî yên Yûnan a nêzîkî Tirkiyê, wê rastiyê îsbat dikin ku Tirkiye jî ji berê kêmtir girîngiyê bide endambûna Yekîtiya Ewropa, bi taybet ku Tirkiye niha di geşbûna aborî de ye. Tevî vê yekê jî dibe ku ji bo tirsandina leşker, mijara endambûna Yekîtiya Ewropa weke dirûşim bihêle. Wisa xuya dike ku di vê rewşa nû de jî Tirkiye bi rêya karkirina li ser dosyeyên navçeyên derdor, bandora xwe bêtir bi kar bîne, bi taybetî ku Obama piştî pîrozkirina Erdogan, amaje da hevoka "hevbeşiya bi nirx" a di navbera Amerîka û Tirkiyê de di warê pirsgirêkên navçeyê de. Amerîka bi taybetî dixwaze ku îslamiyên ne radekal ên Misr, Tûnis, Yemen, Sûriye û Lîbyayê bêtir nerm û vekirî bin, sûdê ji ezmûna AKPê bigirin ji bo ku weke desteyeke Mezheba Sunnî tevî Tirkiyê himber tevgerên Îranê û hevpeymanên wê li navçeyê rawestin.

Eger ev jî bibe wê demê Tirkiyê wê kêmtir berê xwe bide pirsgirêka Kurd, ji ber ku aliyên Ewropî bûn ku di hevkêşeya hundirê Tirkiyê de, aliyê terazûya Kurdan girankiribûn û li ser Tirkiyê kiribûn mercê endambûna Yekîtiya Ewropayê.

Niha îhtîmal heye ku bi armanceke siyasî, lê bi mekanîzmeke yasayî gelek pirsgirêkên mijûlkirinê ji bo nûnerên Kurdan bên dertxistin.

**Di warê bidestxistina mafên netewî bi rêyên aştiyane, pêwîstiya Kurdên Bakur bi ezmûna Kurdên Başûr heye**

Loma tê çaverêkirin ku Herêma Kurdistanê ya ku astê hilberîna Tirkî tê de berbi zêdebûnê diçe, peywendiyên wê yên siyasî jî bi rêya aboriyê bêtir geş bibin. Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî bi sedema ezmûna xwe, dikare rola wê bihêztir be, bi taybetî di warê çareserkirina gelek pirsgirêkên dahatû yên navbera Tirkiye û nûnerên Kurd li Tirkiyê.

Ji ber ku di warê bidestxistina mafên xwe yên netewî û niştîmanî bi rêyên aştiyane û aram pêwîstiya Kurdan li Bakûr bi ezmûna Kurdên Başûr gelekî heye; herwiha pêwistiya wan di warê ezmûna parlamenî li ser asta Îraq û Herêma Kurdistanê bi şêweyekî destûrî heye, ku ji tengasî, baykotkirin, pêkdanên bi coş ên ji encama piştî hilbijartinan dûr be.

Loma ji bo nûnerên Kurdên Bakûr girîng e ku ew polîtîkaya "yan hemû yan hîç" nedin meşandin, ji ber ku ji ber hestiyariya rewşê diyar e ku zehmet e hemû xwestekên Kurdan bi carekê pêk bên. Loma pêkanîna hinek guhertinên corî di destûra Tirkiyê de, berbi mafên bingehîn ên Kurdan û bicihkirina wan di makezagonê de, eger kêm jî bin, ji mana destûrî bi vî şêweyê niha baştir e.

** Rêvebirê projeya Pird a lêkolînan, yekemîn Wezîrê Jîngeha Îraqê yê piştî rûxandina rejîma Seddam.*



# Başî û xirabiyên tavê



Dr. Mesud Mamedî *

**Ji ber ozon kêm bûye, tîrêjên rojê rasterast li çermê mirov dixin, ew jî dikare bibe sedema kansera çerm.**



Di demsala havînê de gelek mirov ji bo ku xwe esmer bikin bi seatan xwe li ber tîrêjên rojê dirêj dikin. Herçiqas sûda rojê ji bo hestiyên mirov hebe jî, zêde mayîna li ber tavê zerarê dide çermê mirov û dibe sedema kansera çerm.

**Başî û xirabiyên rojê ji bo mirov çi ne?**

**Dr. Mesud Mamedî :** Bi rastî dema ku em li başî û nebaşiyên rojê ji bo mirov binêrin, gelek tişt hene ku em bînin ziman. Di serî de, vîtamîna D di rojê de heye. Ev tenê ji tîrêjên rojê tên girtin. Roj bi taybetî ji bo zarok û mirovên kal pir pêwîst û girîng e. Vîtamîna D ji bo hestiyên mirov qahîm bike rolek pir taybet dileyîze, ew jî dema ku roj li çermê mirov dide, tê girtin. Lê belê divê mirov niha bi giranî li ser tîrêjên rojê yên ku di dema îroyîn de zerarê dide mirovan, raweste. Wek ku tê zanîn di tebeqeya ozonê de pirsgirêk hene, ji ber ozon pir kêm buyê ew tîrêjên rojê rasterast li çermê mirovan dixe; ew jî dikare bibe sedema çêbûna kansêrê. Ji ber ku ew tirêj bê filtrê digihîn mirovan. Ji ber wan pirsgirêkan niha li Awustiralyayê ti kes bêyî ku cilan li xwe bike naçe ber rojê; ev li aliyekî, bi cilan dikevin behrê jî û xwe wisa diparêzin. Herwiha li Ewropayê jî bê cil mirov xwe nadin ber tavê. Bi taybetî jî divê zarok ji wan tîrêjan bên parastin.

**Mirov çawa dikarin xwe biparêzin û çend deqeyan li ber rojê dikarin bimînin?**

Ji tîrêja rojê re spekturum tê gotin. Wek me li jor jî got, ozona ku pêşiya rojê digire kêm bûye. Ew beşa ku jê re ultra viyolet dibêjin, bi xwe kansêrê çêdike. Niha pêşiya wê pir nikarin bigirin, ji bo wê jî divê mirov xwe bixwe biparêzin. Ew mirovên ku dixwazin biçin ber rojê divê ji 20 deqeyan zêdetir nemînin. Herwiha ew kes dikarin li ber sîberê xwe dirêj bikin û dîsa dikarin esmer bibin û dîsa feydeya wê ji wan re heye. Divê bê krêmên rojê neçin ber tavê, lê dema ku pir li ber tavê bimînin ew krêmê li xwe dixin ti feydeya wê nabînin. Herwiha mirovên hinekî esmer hîn zûtir reş dibin, lê ew kesên hinekî rengê çermê wan vekirî ye derengtir reş dibin. Ez ji bo wan kesên ku dixwazin xwe bidin ber rojê, pêşniyar dikim bila pir li per tavê nemînin. Bi rastî zerarên pir mayînê ji feydeyên wê zêdetir in. Divê bi awayekî zanist ango bi krêm û cilan xwe biparêzin.

*Amadekirin: Zelal Çelîk*

**Dr. Mesud Mamedî*
*ji Rojhilatê Kurdistanê ye. Ew niha li Almanyayê dijî û dermansaz e.*



## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Serokê şoreşa Kubayê – Cîhgirê muxtar. 2- Çûk û teyrikek – Pirrengî, pir bi reng. 3- Keç û jina nazik, nazdar – Peyv û gotinên dûrî edebê, gotinên herêmî 4- Serf, çûyîn, xerc – Çar salan xwendina zanîngehê, encamnameya zanîngehê – Tûj, ne şîrîn (berepaş). 5- Ap, mam – Notayek (berepaş) – Nexêr, nabe. 6- Doktor (berepaş) – Gotinek henekpêkirinê. 7- Malperên înternetê (berepaş) – Li Ewrûpayê federasyonek komeleyên Kurd. 8- Gotin û nivîsandina bi rêk û pêk, bi edebê ve girêdayî – Çêbû, hat dinyayê. 9- Gişt, hemi – Rojek. 10- Di lîztika qelemaçan de hejmara yek – Pê hirî tê ristin.

**Serejêr:** 1- Esker, kesên di bin emrê fermandarande. 2- Darek, jina bê mêr (berepaş) – Pronavê yekem – Haydê, yalla, zû (berepaş). 3- Reqs, govend – Heywanên ku nazên, ji bo jinan jî tê bikaranîn (berepaş). 4- Li ber şibake û penceran dikeve (berepaş) – Dengê karik û bizinan. 5- Pîs, beredayî, xirab (berepaş) – Fêkîyek. 6- Nexweşîya bawîbûnê (berepaş) – Tûj, şewat. 7- Berbijêr, berendam. 8- Welatek Asyayê. 9- Xwelî û reşbûna binê beroşê – Li Tirkiyê ajansek – Kar, xebat. 10- Du tîpên gotina “reng” – Bi “seyran”ê ve girêdayî. 11- Gotinên ku ji civata edebî dûr in (berepaş). 13- Li Kurdistan çem û rûbarek. 14- Rengek. 15- Yanî, manîya xeberê. 16- Seks, têkilîya cinsî (ji bo heywanan tê bikaranîn).

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | | | | ■ | | | | ■ |
| 2 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | |
| 3 | | ■ | | | | | | | | ■ | | ■ | | | | |
| 4 | | | | | | | ■ | | | | | | | ■ | | |
| 5 | | | ■ | | | ■ | | | ■ | | | | | | | |
| 6 | | ■ | | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 7 | | | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 8 | | | | | | ■ | | | ■ | | | | | | | |
| 9 | | ■ | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 10 | ■ | | | ■ | | ■ | | | | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 101

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | Ç | E | Ç | E | N | Î | S | T | A | N | ■ | M | I | R | A | D |
| 2 | A | Z | A | M | Î | ■ | M | E | ■ | A | L | Î | K | A | R | Î |
| 3 | Y | A | R | ■ | N | A | S | N | A | M | E | ■ | A | V | I | S |
| 4 | X | ■ | Ş | R | F | F | ■ | R | ■ | Z | M | F | R | ■ | F | A |
| 5 | A | L | E | M | ■ | E | M | Î | N | E | | | | | | |
| 6 | N | A | M | ■ | Î | R | E | H | ■ | T | | | | | | |
| 7 | E | Z | ■ | A | R | Î | N | ■ | R | ■ | | | | | | |
| 8 | ■ | I | N | S | A | N | ■ | Z | O | P | | | | | | |
| 9 | F | M | Î | A | D | ■ | R | O | M | Î | | | | | | |
| 10 | M | Î | ■ | Q | E | L | E | M | A | Ç | | | | | | |

Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafik

# Mêrû çima bi rêz rêve diçin?



Dema mêrû cihekî xwarinê li derekê dibînin, ji bo ku mêrûyên din jî vî cihî bibînin, di rêya xwe de heya digihin vî cihê xwarinê ew bêhnekê belav dikin. Bi vî awayî hemû mêrû bi rêz vê bêhnê dişopînin heya digihin cihê xwarinê. Yanî ji bo dîtina cihê xwarinê her mêrûyek mêrûyên pêşiya xwe dişopîne, ev bêhn wekî werîsekî veşartî mêrûyan bi hev girêdide heya digihin cihê xwarinê.

# Yekemîn wêne kengî hat kişandin?



Li gorî qasî ku tê zanîn, yekemîn wêne ji aliyê zanayê frensî Nicéphore Nièpce di sala 1826ê de hatiye kişandin. Wê demê ji bo ku wêneyek were kişandin, diviyabû mirov 8 saetan li bendê bisekine. Di salên 1930 û 1940an de frensî û îngilîzan ev teknolojî bi pêş xistin. Îro makîneyên wênekêş gelekî erzan in û heta di telefonên destan de jî hene.

*Peyvan bi hev re girê bide. Mînak: Heyv û roj...*



| | | | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| Pênûs | | | R | | Û | | | | | |
| Mase | | | | | | U | | | Î | |
| Cam | | | | D | | | | | | |
| Erd | | | | | | D | | | | R |
| Baxçe | | | X | | N | | | | | |

Peyva veşartî: KURDÎ

## Li gor encaman birengîne




2 – sor, 3 – zer, 4 – şîn, 5 – qehweyî, 6 – rengê leş, 7 – mor, 8 – pembe

## FÊRÎ KURDÎ BIBE

Ss س



Seg سەگ

# Çawa dibe?





Eger tu berê xwe bidî van figûran, figûrên wêneyê jor û yên jêr wek hev in, tenê cihê wan hatiye guhertin. Lê di wêneyê jêr de valahiyek çargoşe peyda bûye. Ev ji kû hat? Ma gelo ne diviyabû ew valahî nebûya, ji ber ku figûr wek hev in, tenê cihê wan hatiye guhertin?